# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

ISSN 2148-5305

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 97 04 - 10 Avrêl 2016 basnuce.com




Jinên Peşmerge êdî ferman-dar in

R10



# Çareserî Modela Çekoslovakyayê ye

Biryara referandûma serxwebûnê ya Mesûd Barzanî, hevsengiyên heremî gûhertin û bû se-dema niqaşên nû. Pêşniyara Mesûd Barzanî ya wek terzê Çekoslovakyayê bêxwîn, veqetandi-ke bêşer ev demekî dirêje tê gotûbêjkirin. Barzanî ragihandibû ku ew ê nêzîkatiyên tu aliyan yên li dij serxwebûnê qebûl nakin û daxwaza serxwebûnê ji bo gelê kurd jêvenegere.

R02-3

Di derbarê referandûma serxwebûnê jî tê payîn Mijdarê pêk bê, ji aliyên siyasî şîroveyên cihê werin kirin jî, kurd di majara serxwe-bûnê de bi rijd in. Ji gelheya Iraqê ku nêzî 21 mi-lyon e, 6 – 7 milyon kurd e. Li gor hin pisporan 'Veqetandina Kadîfe' ku di navbera çekî û slovakiyan de pêk hat, di navbera kurd û ereban de ne pêkan e, li gor hinekan jî dibe ku ev model di navbera gelên herêmê de bê pêkanîn.



Dr. Nasih Xefûr Remezan:

## Derûniya kurd bo serxwebûnê amade ye

"Ji aliyê derûnî û rûhî kurd ji bo serxwebûnê amade ne. Kurdan hemû rêyên din jî ceribandin e. Niha ji bilî ragihandina serxwebûnê tu rêyek din jî nemaye."

R08-9

## Îran dîrok û çanda kurdan talan dike

R11

## Sûr bi lezgînî hat îstîmlaqkirin

R12

## Penaberên Sûriyê wê bibin çeka de-mografîk?

R13

## "Hûn dikarin çayekê bi me re vexwin"

R15

# Çareserî Modela Çekoslovakyayê ye

Dilan Almaz


Serokê RHK'e Mesûd Barzanî û Serokê Çekya Milos Zeman

Li Iraqê ku piştî midaxeleya DYA'yê di çarçoveya herêmên federal de, ji aliyê du hikûmetan ve tê birêvebirin, ji 2014'an û vir ve daxwaza kurdan ya serxwebûnê tê axaftin. Daxwaza serxwebûnê ku di navbera Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) û Hikûmeta Bexdayê de bû sedema aloziyê, di rojeva Rojhilata Navîn û Ewropayê jî de ye. Enqere û Tehran li hember daxwaza serxwebûnê bimesafe ne. Hikûmeta Bexdayê jî bi awayekî eşkere dij derdikeve. Îsraîl, Komara Çek, Slovakya, Holanda, Elmanya û Vatîkan jî di çarçoveya 'mafê gelan yê diyarkirina çarenûsa xwe' de piştgiriyê didin encama ku tê pêşbînîkirin dê ji referandûmê derbikeve. Rêveberiya RHK'ê weke qonaxa proseya serxwebûnê plan dike ku di Mijdara îsal de referandûmê pêk bîne. Hewlêr bi referandûma ku dê beriya hilbijartinên Serokatiya DYA'yê were lidarxistin, plan dike ku li ser serokê nû zal bike.

**Barzanî: Ne Yugoslavya, Çekoslovakya**

Pêşniyara Modela Çekoslovakya ya Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ku li Iraqê di navbera kurd û ereban de pêk bê, ji aliyê zanyarên siyasetê ve tê niqaşkirin. Barzanî di sala 2014'an de ku serxwebûna Kurdistanê hat rojevê gotibû, "Ne weke mînaka şerê navxweyî yê Yugoslavyayê, wê wek Modela Çekoslovakyayê ezmûneke aştiyane pêk bê. Serxwebûn wê ne bi tundiyê, bi aşitiyê pêk were"û bang li Parlamentoya Ewropayê kiribû ku piştgiriyê bidin serxwebûna Herêma Kurdistanê.

Barzanî di meha Nîsana par de serdana paytexta Komara Çekê Pragê kiribû û bi Serokkomar Milos Zeman re hevtîdin pêk anîbû û di axaftina xwe ya li wir de gotibû, "Serpêhatiyên Çekya û Slovakyayê mînakên serkeftî û zindî ne. Nîşan dide ku hevgirtin û veqetîna bi darê zorê bi sernakeve. Li gor min dibe ku ji modela Çek û Slovakyayê bê îstîfadekirin."

Serokkomarê Komara Çekê Milos Zeman jî ragihandibû ku welatê wî amadeye ku alîkariya çekan ya Herêma Kurdistanê bike û Pêşmerge weke "hêza DAIŞ têk birî"binav kiribû. Zeman her wiha ji ber têkoşîna li dij DAIŞ'ê spasiya Barzanî kiribû û destnîşan kiribû, "Tu qehrema-nê Kurdistanê yî."

**Modela Çekoslovakyayê: Veqetîneke medenî!**

Li Çekoslovakyayê bi 'Şoreşa Kadîfe' ku di navbera 16 Mijdar – 29 Berfanbar 1989'an de pêk hat, komunîzm bi dawî bû û Václav Havelbû Serokê Dewletê. Di 25 Berfanbar 199'an, piştî belavbûna Yekitiya Komarên Sosyalîst yên Komarê, di navbera siyasetmedarên çek û slovakan de li ser yekitiya welat niqaşên mezin destpê kirin. Havel ji bo ku li dij parçebûna welat bû û dixwast çek û slovak bi sîstemeke federal bimîn in, dest ji peywîrê kişand. Di en-cama hevdîtinên di navbera siyasetmedarê çek Václav Klaus û siyasetmedarê slovak Vladi-mír Mečiar de 23 Tîrmeh 1992'an li ser cudabûna herdu welatan rêkeftinek pêk hat. Bi vî rengî 31 Berfanbar 1992'an de welat bi awayekî aştiyane bû du parçe. Bi vê veqetînê paytexta Komara Çek bû Prag û ya Slovakyayê jî bû Bratîslava.

**"Kurd û ereb, wek çek û slovakan"**

Me Modela Çekoslovakyayê ji siyasetmedar û rojnamegerên ku herêmê ji nêz ve dişopînin pirsî ka ev model pêkan e ku di navbera kurd û ereban de pêk were an na. Necib Balayi ku demeke dirêj li Pragê rojnamegerî kiriye, ji BasNûçe'yê re nirxandin kirin û angaşt kir ku modela Çekoslovanyayê li Iraqê ne pêkan e. Balayi got ku gelên kurd û ereb ne mîna çek û slovakiyên ku ji gelên Ewropayê ne û axaftina xwe wiha domand: "Civakên li Ewropayê dijîn girêdayî mafên mirovan e, yekitiya wan ya civakî bihêz e, demokrat in û hişmendiya wan ya mafê gelan yê diyarkirina çarenûsa xwe gelekî bi pêş ketiye. Erebên Iraqê hemû tiştî bi hebûna komployekê ve girêdidin. Ereb bi awayekî rasteqîn li meseleya nanêrin. Ew veqetîna kurdan weke parçebûna Iraqê dibînin."Balayî di berdewamiya axaftina xwe de destnîşan kir ku ew nêzîkatiyeke rewşenbîrî li Iraqê nabîne û got ku ji ber ku welatên din jî piştgirî dan, çek û Slovak bê arîşe veqetiyan. Balayi diyar kir ku li Iraqê vîna gel dernakeve holê û eşkere kir ku kurd wê di referandûmê de serxwebûnê pesend bikin. Balayi li ser êrişên DAIŞ'ê yên jî axivî û got, "Niha li herêmê li dijî DAIŞ'ê şerek heye. Di vê rewşê de ne Ewropa û ne jî Emerîka heta ku DAIŞ'ê ji holê ranekin destûr nadin kaosek û tevlûheviyeke din. Ji ber wê yekê piştgiriyê nadin daxawza kurdan ya veqetîna ji Iraqê. Ji bo kurdan jî di nava vê kaosê de, daxwaza veqetînê wê bibe sedema arîşeyan."

**Iraq û Çekoslovakya: Lêçûn û cihêtî**

Serokê Beşa Pêwendiyên Navnetewî ya Zaningeha Ahi Evranê Doç. Dr. Serhat Erkmen ji BasNûçe'yê re eşkere kir ku Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî di her fersendê de daxwaza serx-webûnê tîne ziman û destnîşan kir ku nêzîkatiyên dewletên Rojhilata Navîn yên li hember vê daxwazê di çarçoveya berjewendiyên wan de ne. Erkmen bibîrxist ku ji destpêka bilêvkirina daxwaza serxwebûnê ji aliyê Mesûd Barzanî û vir ve gelek gûhertinên herêmî çêbûne û axaf-tina xwe wiha domand: "Mînak, faktora DAIŞ'ê hevgirtina axa Iraqê bi awayekî fîîlî dorpêçkirî ye. Li herêmê di astên etnîkî û mezhebî de ku axa Iraqê jî derbas dike, pevçûn hene. Di nava sînorên RHK'ê de atmosfera polîtîk zêde aloz e û di navbera paritiyên siyasî de di gelek mijaran de rêkeftinek tune ye. Her wiha bihêzbûna PYD'ê û afirandina rastiyên siyasî yên nû, navbera PDK û partiyên kurd yên din vekir. Û qeyraneke aborî ya mezin ku di 2 salên dawîn de pêşket û 2015'an herêm girte nava xwe heye. Ji ber wê yekê em dikirin gotina serxwebûnê û îxtîmala pêkhatina wê, ne tenê di gotinê de di li ser dînamîkên li herêmê jî binirxînin."

Erkmen lêçûn/cihêtiyên di navbera kurd – ereb û çek – slovakan de jî nirxandin û got ku li gor piraniya raportên li ser parçebûna Iraqê tên nivîsên, li Iraqê veqetîneke ji ber xwe û bê xwîn nabe. Erkmen şibandin û cihêtiyên di nevbera herdu welatan de di çarçoveya çandî, aborî û navnetewî nirxandin û diyar kir ku kêmbûna îradeya jiyana bi hevre ya kurd û ereban dişibe gelên çek û slovakan. Erkmen wiha dirêjî da axaftina xwe: "Bi taybetî kurd di her fer-sendê de eşkere dikin ku ew ji Iraqê weke siyasî, civakî û çandî cuda ne. Ev cudatî jî ne di asteke wisa de ne ku kêm bên dîtin. Namaze "mafê diyarkirina çarenûsa xwe"mafekî siyasî ye û piştî dagirkirinê bi Destûreke nû hevgirtineke bi dildarî heye, demeke dirêje ji argûmaneke girîng yên siyasetmedarên kurd e. Ji vî alî ve dibe ku dişibe Çekoslovakyayê, lê li Iraqê ne du hêman herî kêm sê hêmanên ku wek siyasî bi hêz in. Ji ber ku li ser çarenivîsa welat ne tenê erebên şîe, niştecihên herêma ku wê veqetîn çêbe, erebên sunnî û tirkmen jî wê biryar bidin. Kilîta veqetîneke bêpevçûn ji xeynî erebên şîe ku Bexdayê kontrol dikin, di destê erebên sunnî û tirkmenan de ye ku bandora veqetînê ji aliyê fizîkî ve herî zêde li ser wan e."

**"Cihêtiyeke serdemî heye, veqetîna bê şer zehmet e"**

Akademîsyen Erkmen li ser girîngiya cudatiyên aborî û belavkirina debarê ku bûn sedema veqetîna Çekosilovakyayê rawestiya û got ku li Iraqê cudatiyeke bi vî rengî tune ye û şîrov-eya 'ji ber wê yekê ev wê veqetînê dijwar bike' kir. Erkmen di derbarê qeyrana aborî ya li herêmê jî axivî û got, "Siyasetmedarên kurd ku heta beriya salekê jî angaşt dikirin ku ew ê bi çavkaniyên xwezayî bi serê xwe nîzameke aboriyê saz bikin, piştî ketina buhayên petrolê û geşedanên li herêmê ku bûn sedema qeyrana aboriyê, niha ew angaştên xwe danîne aliyekê. Hevdîtinên petrolê yên di navbera Hewlêr û Bexdayê de nîşaneya herî girîng ya vê yekê ye.





Erkmen destnîşan kir ku di proseya veqetîna Çekoslovakyayê de şert û mercên siyasî, at-mosfera herêmî û navnetewî gelek cihê bû û got, "YKSS ji nû belav bûbû. Di serdemeke yek qutbî ku pêşengiya wê DYA'yê dikir hebû. YE ne di wê rewşê de bû ku pevçûneke din jî ragire. Di encama biryara veqrtînê ya aliyan de, aktorekî herêmî û navnetewî tune bû ku mi-daxele bike. Daxwazên hêzên mezin gelek cuda bûn. Nihali Rojhilata Navîn rewşeke bi heman awayî tune ye. Yek qutbî bi dawî bû. Heta li Rojhilata Navîn denklemeke ewlekariyê ya nû ava dibe. Hêzên mezin bi hemê şiyana xwe midaxeleyî polîtîkayên navxweyî yên welatên herêmê dikin. Her wiha bi awayekî eşkere bi hevre şerê wekîliyê dikin. Ji ber van sedeman li Rojhilata Navîn ku di rewşeke dînamîka pevçûnan di asteke zêde bilind de ye, îxtîmala veqetîneke bêşer pir kêm e."

**"Wergirtina Çek û Slovakyayê bo nav Ewropayê avantaj bû"**

Akademîsyenê Beşa Pêwendiyên Navnetewî ya Zaningeha Kırıkkaleyê Prof. Dr. Erol Ku-rubaş jî da zanîn ku veqetîna bêşer û pevçûn ya gelên çek û slovak di heyameke ku statuko serobino bûbû de pêkhat û got ku wergirtina çek û slovakyayê ji bo nava YE'yê veqetîna her-du welatan kurt kir û wiha axivî: "Bi saya YE'yê çek û slovak hem da di nava sîsteme di ser netewan de yekitiya xwe bidomînin û hem jî bandorên neyînî yên veqetînê yên li ser herêmê beralî bikin. Her wiha di qada herêmî û navnetewî de tu hesabê ku bibe sedema şerê ber-jewendiyan di navbera dewletan de tune bû. Divê mirov bibîr bixe ku li vî welatî çavkaniyên xwezayî yên ku di qada herêmî û navnetewî de bibe sedema rikberiyê jî tune bû."

Kurubaş angaşt kir ku li Iraqê veqetîneke bêşer û bêxwîn ne pêkan e û got, "Ji aliyê kurdan ve em lê binêrin, her êiqas kurdên Iraqê di bin pêşengiya Barzanî de yekitiyek û hevgirtinek pêk anîbin jî, li hember vê PKK ya ku ji aliyê birdoziyê ve cuda ye û Barzanî û sîstema ku ew temsîl dike, weke bermayiya feodalîteyê dibîne heye. Û PKK di nava RHK'ê de siyasî û ya herî girîng ji aliyê leşkerî ve bihêz e. Barzanî heya niha tolere kiribe jî, di îhtîmala serxwebûnê de ji ber têkiliyên Tirkiye û Îranê naxwaze ku tolere bike. Hebûna PKK'ê ya li vir ji bo wî gelekî girîng e. Ev jî tê wê wateyê ku wê dînamîka şer ya jêveneger derkeve holê."

**Hevsengî û jeopolîtîka herêmê**

Kurubaş di dewama axaftina xwe de destnîşan kir ku hemahengiya li Rojhilata Navîn naşibe ya Ewopayê û veqetîn wê hevsengiya li herêmê bilerizîne. Kurubaş got ku veqetîn ji cuda-bûna kurd û ereban wêdetir e û axaftina xwe wiha domand: "Dê bandorê li ser gelek dewletan bike an jî gelek dewlet wê hewl bidin ku sûdê jê bistînin. Ev veqetîn beriya her tiştî wê ban-dorê li ser Tirkiye, Îran û Sûriyê bike ku gelheyeke kurd lê heye. Ji ber hindê ji aliyê pêwendiyên kurd-tirk, fars-kurd û ereb-kurd yên din encamên vê yekê wê hebin. Li vir Tirkiye di bin hin şert û mercan de bê qanihkirin jî, qanihkirina Îranê pir zehmet e. Ji ber ku kurd dixwazin ji Iraqa ku veguheriye qada gelheya şîe, veqetin. Îxtîmala ji nû ve rûdana pirsgirêka kurd ya li Îranê jî wê Îranê aciz bike. Faktora Îsraîlê jî heye, ku Îsraîl bixwaze bi dewleta kurdî re pêwendiyên baş dêne û ev jî wê Îranê aciz bike."

Kurubaş got ku ji ber petrol û rewşa jeopolîtîk ya Herêma Kurdistanê dibe ku pevçûn rû bidin û diyar kir ku hêzên navnetewî wê li hember dewleta nû polîtîkayeke an li pişt an jî li dij birêve bibin. Kurubaş wiha axivî: "Jeopolîtîk û jeoekonomiya ji petrolê encam dide ya RHK'ê vê pevçûnê jêveneger dike. Her dewlet dê polîtkayeke li pişt an jî li dij, birêve bibe. Dijderketin an jî alîgirî wê bi kişandina mîhwera xwe ve têkildar be. Aktorên herêmî hene ku yên li derveyî vê mîhwerê bimînin bikarbînin. Lewre rikberiya hêzên navnetewî ya li ser herêmê wê vê veqetînê bikişîne nava şer."

**"Dibe ku kurd û ereb bê şer ji hev veqetin"**

Ji Zaningeha Prag Charles Akademîsyen Petr Kubálek li ser vê mijarê ji rojnameya me re ax-ivî û diyar kir ku pêkan e ku Modelê Çekoslovakyayê di navbera kurd û ereban de pêk were. Kubálek da zanîn ku sala 1992'yan dema ku çek û Slovak ji hev veqetiyan, gelek biryarên şaş hebûn û wiha axivî, "Mînak, referandûm nehate kirin. Saziyên medyayê di derbarê rewşa welat û daxwazên komên siyasî agahiyên xelet belav dikirin. Medyaya çekiyan derbarê Slo-vakyayê de zanyariyên şaş belav dikirin. Dayîna mûçeyên teqawîdan piştî 20 salan hê jî çare-ser nebûye. Lêbelê rewşa gelemper ji bo veqetînê gelek guncaw bû."Kubálek ragihand ku ge-lên li Çekoslovakyayê dijîn xwedî wê hişmendiyê bûn ku welatên wan ji du herêmên dîrokî pêk tên û gelan tu daxwaza axê nekirin. Kubálek wiha dirêjî da axaftina xwe: "Hemû welati-yên Çekoslovakyayê dizanîn ku welatên wan ji du herêmên dîrokî, ango Çek û Slovakyayê pêk tên. Ev rastî zelal bû û sînorên herdu herêman diyar bûn. Çekan tu deman angaşt nekirin ku xakeke dikeve nava herêma Slovakan ya wan e û arîşeyeke wisa dernekete holê. Lê pirs-girêkeke mîna vê, di navbera Macarîstan û Slovakyayê de heye. Tenê 1993'yan li ser 2 gun-dan nîzamkirina sînor çêbû."

Kubálek bibirxist ku gelên çek û slovak ji aliyê çand, huner û ziman ve gelek nêzî hevdu ne û axaftina xwe bi van hevokan bi dawî kir: "Mînak yekî çek, eger bixwaze li Slovakyayê bijî, bi awayekî azad dikare biçe wir û li wir bicih bibe. Lê dewletên Çek û Slovakyayê paşê dawî li meseleya hemelatiya cot anîn. Ji ber ku hikûmetan dîtin ku hemwelatiya cot wê bibe sedema pirgirêkên cidî yên madî û hiqûqî."


Serokê Çekya Milos Zeman û Serokê Slovenya Borut Pahor

**"Wek slovakan, divê dewleta kurdan jî hebe"**

Rojnamegerê slovakî Andrej Matisak ji BasNûçe'yê re axivî û eşkere kir ku li herêmê demeke dirêj xebat kirine û got divê herdu hikûmet jî di veqetîna bi rêyên aştiyane de dax-wazker bin. Matisak diyar kir ku rewşa herêmê ya bipevçûn li pêşiya veqetîna bi rêyên aştîyane asteng e û daxuyand ku dem li gor hevsengiyên herêmê ne guncaw e. Matisak wiha axivî: "Rewşa kurdan ji aliyên daxwazên wan ve ji ya Çekoslovakyayê qet ne cihê ye, lê belê rewşa wan zêdetir tevlûhev e. Hewlêr û Bexda bi aştiyane biryara veqetînê bidin jî, helwesta dewletên cîran ya li hemberî vê girîng e. daxwaza kurdan jî ya mîna Slovakan ku bibe sedema çi jî bibin xwedî dewleteke serbixwe, tê fêmkirin û her gel dewleta xwe ya serbixwe dixwaze."Matisak balkişand se girîngiya dîplomasiyê û got, "Pêkanîna refrandûmê dibe ku bi erênî bê pêşwazîkirin, lê wek rewşeke xwezayî weke zext bê dîtin û bibe sedema bertekan. Ji bo serxwebûnê zêdetir pevçûn, wê zirarê bide herkesî. Divê ev bi dem re û bi girîngîdayîna dîplomasiyê, bi rêyên aştiyane pêk were."

## Ebadî di hikûmeta nû de kurdan veder dike

# Hewlêr û Bexda ji hev vediqetin

Zeyat Cebo




Serokwezîrê Iraqê Heyder Ebadî, bi armanca çareserkirina qeyrana siyasî û aborî ya Iraqê, di dawiya heyama jê re hatibû danîn de, lîsteya navên wezîrên hikûmeta teknokrat eşkere kir. Her çend daxuyaniyên Ebadî ji bo vê serdemê li gor dilê hindek aliyên iraqî jî be, kurd ne xwedî heman nêrînê ne. Aliyê kurd daxwaza şirîkatiyek rasteqîne dikin û ji serkeftina projeya revîzyonê ya Ebadî bi guman in. Serokatiya RHK'ê bi daxuyaniyekê da zanîn ku ew ji şêwazê guhertina kabîneyê ya Hikûmeta Iraqê ne razî ye. Herwiha nûnerên kurdan ên li Bexdayê jî dibêjin ku, heger di dawiya vê proseyê de, daxwazên kurdan ji aliyê rêveberiya Bexdayê ve neyên pesend kirin û pêk anîn, bilî veqetiyanê ti rêyek din bo wan namîne ku wê ev yek jî bi awayek aştiyane û di çarçoveya guftugoyan de pêk bê.

Ji aliyê din ve, li RHK'ê, bi armanca çalakkirina hikûmet û parlamenê jî kar û xebat bê navber berdewam dikin. Di nava hefteyê de nûnerên her çar partiyên siyasî yên di nava hikûmetê de, li bajarê Silêmaniyê civînek encamdan. Tevgera Goran ku pêdagirî di şertên xwe de dike, beşdarê civînê nebû.

Artêşa Iraqê hefteya borî bi armanca rizgarkirina bajarê Mûsilê ji eniya Mexmûrê ve operasyonek dabû destpêkirin. Operasyon li ber nahyeya Geyare rawestiya ku ev nahye tenê 60 km dûrî bajarê Mûsilê ye. Wezîrê Berevaniya Iraqê Xalid Ûbeydî di nava hefteyê de hate Mexmûrê û serdana Fermandariya Operasyonên Hevbeş ê Nînowayê kir. Ûbeydî daxuyand ku wê Hêzên Pêşmerge di operasyona Mûsilê de, çalak bin.

Di destpêka hefteya borî de Hewlêrê pêşwaziya çend mêvanên giring kir. Sekreterê Giştî yê Netewên Yekgirtî Ban Ki-moon li gel berpirsên RHK'ê hevdîtin pêk anî û daxuyand ku RHK'ê li dijî DAIŞ'ê di şer de ye û deriyê xwe ji bo penaberan vekiriye. Ew ê jî ji bo derbaskirina qeyrana aborî alîkariyê bidin Hewlêrê.

**Serokatiya RHK'ê: Ti wateya şêrîkatiya li gel hikûmeta Bexdayê nemaye**

Di nava hefteyê de çavê RHK'ê li ser hûrgûliyên pakêta revîzyon û lîsteya hikûmeta nû ya teknokrat bû ku ji aliyê Serokwezîrê Iraqê Heyder Ebadî ve hate eşkere kirin. Piştî hevdîtina Ebadî ya ligel Desteya Serokatiya Parlamena Iraqê, derbarê çend madeyên reforman de lihev kirin. Xalên lihevkirinê jî bi vî awayî bûn; Di nava mehekê de wê hemû rêveberiyên sazî û dezgehên hikûmî bên guhertin, hejmara wezaretan ji bo 16 wezaretan bê kêm kirin û di nava 10 rojan de, ji bilî wezarên navxwe û yê berevaniyê, hemû wezîrên din bên guhertin. Li gor kotaya ji sedî 20 ya kurdan, divêya 3 wezaret bo pişka kurdan bihata veqetandin. Lê di nava lîsteya nû ya Ebadî de tenê navê 2 wezaret bûne para kurdan. Tê gotin ku Ebadî bi vê helwestê bi awayek eşkere ji aliyê kurd re dibêjê, "hûn dikarin ji Bexdayê cûda bin."

Serokatiya RHK'ê, beriya eşkerekirina kabîneya Ebadî helwesta xwe ragihand û daxuyand ku ew ji şêwazê guhertina Hikûmeta Iraqê ne razî ye. Serokatiya RHK'ê diyar kir ku Serokê RHK'ê Mes3ud Barzanî, ji nemana bingeha şîrîkatiya ligel Hikûmeta Iraqê nerazî bûye û ev nerazîbûna xwe ji bo Serokomarê Iraqê Fûad Mehsûm jî aniye ziman. Di daxuyaniyê de wiha hate gotin: "Ji bo Serok Barzanî giringiya guhertina wezîran û berbijêr kirina kesên nû yên ji bo wergirtina postên wezaretan nemaye. Ji ber ku bingeha şêrîkatiya ligel Hikûmeta Iraqê de hatiye binpêkirin û wateya wê nemaye. Heger şêrîkî nema be ma çi bihayekê kursiyên wezaretan dimîne?"

Nûnerên kurdan ên li Baxdayê jî bi daxuyaniyekê diyar kirin ku, ew weke nûnerên kurd, di mijira parastina şêrîkatiyek rasteqîne ya ligel hikûmeta Bexdayê xwedî yek helwestî ne. Nûnerên kurd diyar kirin ku ew piştgirî didin hemû pêngavên çaksazî û tekoşîna li dijî gendeliyan û başkirina şertên dadweriya civakî û başkirina şert û mercên jiyana welatiyan. Lê ti biryarên kesî qebûl nakin û herwiha dibêjin ku divê mafê nûneratiya kurdan jî bê parastin.

Ji aliyê din ve, Parlamenterê Kurd ê Parlamena Iraqê Nizar Salim Doskî ku navê wî di lîsteya kabîneya Ebadî de weke Wezîrê Petrolê hatibû eşkere kirin, bi daxuyaniyekê diyar kir ku ev lîste li ser tifaq û lihevkirinê nehatiye amadekirin û lewra jî ew ê wê erkê negre.

**Gerdî: Wê aliyê kurd heta dawî pabendê destûrê bin**

Cîgirê Serokê Fraksiyona PDK'ê Tariq Gerdî bo BasNûç'yê ragihand ku aliyê siyasî yê kurd li Bexdayê, lîsteya Ebadî ya kabîneya hikûmeta teknokrat qebûl nake. Lê li gor şêwaza destûrê, 10 roj ji bo erêkirina navên kabîneyê hatiye terxankirin û ew ê jî pabendê xalên destûrê bin. Gerdî got: "Me ligel Serokkomar jî hevdîtinek pêk anî. Helwesta aliyê kurd yek e. Em ê vegerin Hewlêrê û rewşê ji nûh ve binirxînin. Di vê rewşê de Baxda xwe nêzîlê rêkeftinê nake, herwiha daxwazên kurdan jî liber çav nagre. Emê heta dawî jî pabendê Destûra Iraqa Federal bibin ku tê de mafên kurdan hatine destnîşan kirin." Gerdî diyar kir ku heger di vê heyamê de, guhertinên ku kurd dixwazin neyên kirin, ji bilî cûdabûna li gel Bexdayê, ti rêyek din bo kurdan namîne.

**Silîvaneyî: Pirên navbera Hewlêr û Bexdayê dirûxin**

Parlamenterê Kurd ê Parlamena Iraqê Serhan Ehmed Silîvaneyî jî balkêşande ser wê yekê ku ti şansê serkeftina projeya revîzyonên Ebadî nîne û got: "Heger dixwazin rêkeftinek bê kirin, divê bê şert û merc daxwazên kurdan bên qebûlkirin. Wê kurd dest ji mafên xwe yên destûrê bernedin. Bingehê hikûmeta federal a Iraqê, di sala 2003'êyan de li ser hîmê kotayan hate damezrandin. Hikûmetên ku van kotayan û mafan nas neke, nikare li ser lingan jî bimîne." Silîvaneyî daxuyand ku di vê serdemê de di navbera Bexda û Hewlêrê de qeyrana siyasî û aborî heye. Bi projeya Ebadî jî hemû pirên navbera herdu aliyan dirûxin û wiha got: "Di rewşek wiha de mafê kurdan e ku daxwaza serxwebûnê bikin. Jixwe ev maf di Destûra Iraqê de ji bo kurdan hatiye danîn. Êdî biryara serxwebûnê di destê RHK'ê de ye. Biryara herî rast ew e ku kurd bi awayek aştiyane û bi rêya guftugoyan ji Bexdayê cûda bin. Jixwe Serok Barzanî ji gelek caran balkêşaye ser vê mijarê û gotiye ku ew dixwazin ligel Baxdayê bi birayane rûnin û daxwaza veqetînê ji Bexdayê bikin."

**Bazyan: Ji bo serxwebûnê hêncetên Hewlêrê zêdetir bûn**

Akademîsyen û lêkolîner Mihemed Bazyan jî di wê baweriyê de ye ku, berî bê pesend kirin jî, şansê serkeftina projeya Ebadî pir kêm e. Mihemed Bazyan derbarê mijarê de ji bo BasNûçe'yê got: "Di rastiya îro ya Iraqê de, şansê avabûna vê hikûmetê pir kêm e. Wê proje û kabîneya ku Ebadî pêşkeş kiriye pirsgirêkan kûrtir bike û ji aliyê parlamenê ve jî neyê pesend kirin." Bazyan diyar kir ku Serokwezîr Ebadî xizmeta perçebûna Iraqê dike û berçevnegirtina mafên kurdan jî bi vê yekê ve girêdayî ye. Bazyan got: "Bexda pir bê minnet bûye. Dibêjin 'em bûdce nadin we, mafên we yên siyasî nas nakin û emê wezîran jî bi dilê xwe hilbijêrin.' Bi awayek eşkere ji kurdan re dibêjin 'herin biryara xwe hûn bixwe bidin, ji me cûda bin.' Ji vir û pê ve biryar dimîne ser RHK'ê. Ji bo serxwebûnê hêncetên Hewlêrê zêdetir bûn. Ev jî giring e ku ka wê desthilata kurd di vê mijarê de çend bi cûret be."

Akademîsyen û Lêkolîner Mihemed Bazyan destnîşan kir ku herweke modela Çek û Silovakyayê, Herêma Kurdistanê û Iraq jî nêzîkê jihev cûdabûnê ne û got: "Ji Şingalê heta Xaneqînê, bi armanca ewlekariyê xendekan li sînorên Başûrê Kurdistanê dikolin. Ya rastî ev xendek sînorên siyasî û cografî yên Kurdistanê diyar dikin. Navçeyên nakok ên ku di Destûrê Iraqê de bi xala 140 hatine diyarkirin jî dikevin nava van sînoran. Herwiha Hevpeymaniya Navdewletî ya di pêşengiya DYE û Fransa serkêşiya wî dikin jî, van sînoran diparêzin. Îsraîl gelek caran amaje bi pêwîstiya damezrandina dewleta kurdî dike. Wezîrê Derve yê DYE yê berî Henry Kissinger jî diyar dike ku ji bo serkeftina projeya DYE li Iraqê de, divê ev dewlet di nav kurd, sûnne û şieyan de bibe sê perçe. Wê ev cûdabûn li ser hîmê şer û xwînê nebe. Ji bo vê jî lêgerînê li ser modela rast dikin. RHK'ê behsa raferandûmê dike. Dixwaze raya gel bistîne û li ser hîmê lihevkirinê ji Bexdayê cûda bibe."

**Operasyona Mûsilê liber deriyê Geyare rawestiya**

Pêngava yekem a operasyona rizgarkirina bajarê Mûsilê ku ji aliyê lîwayên 72 û 91 ên firqeya 15 a Artêşa Iraqê ve hatibû destpêkirin, berî bigehe armanca xwe, ji ber şert û mercên hewayê, rawestiya. Wezîrê Berevaniya Iraqê Xalid Ûbeydî di nava hefteyê de çû Mexmûrê û serdana Fermandariya Operasyonên Hevbeş ê Nînowayê kir û ligel berpirsên Hêzên Pêşmerge hevdîtin encam da. Ûbeydî bi daxuyaniyekê diyar kir ku wê operasyona Mûsilê bidawî bike û got ku wê hêzên Pêşmerge jî di operasyonê de çalak bin.

**Gerdî: Wê Pêşmerge neçe derveyî herêmên desnîşnakirî**

Fermandarê Pêşmerge Ehmed Gerdî derbarê amadekariyên Hêzên Pêşmerge û hûrgûliyên operasyona Mûsilê de bo BasNûçe'yê axivî û diyar kir ku bêyî piştgirî û hevkariya Hêzên Pêşmerge, Artêşa Iraqê nikare di operasyona Mûsilê de bigehe encamekê. Gerdî got:



"Derbarê beşdarbûna Hêzên Pêşmerge ya operasyona Mûsilê Hewlêr û Bexda lihev bikin jî, bawer nakim ku Hêzên Pêşmerge dernekevin derveyî sînorên Kurdistanê. Di yekem pêngava operasyonê de jî eşkere bû ku, Artêşa Iraqê ji bo gehiştina armancên xwe pir lawaz û bêşiyan e. Weke artêşek bi nîzamî nikare tevbigere û weke Pêşmerge jî ne dilsoz in. Jiber vê yekê jî Wezîrê Berevaniya Iraqê behsa pêwîstiya alîkarî û piştgiriya Hêzên Pêşmerge dike."

Fermandarê Pêşmerge Gerdî êrîşên rêxistina DAIŞ'ê yên dema dawî jî nirxand: "Dema mirov êrîşên dawî yên terorîstên DAIŞ'ê dinêre, tê dîtin ku rêxistina terorîstî ji têkçûna ya xwe li hember Pêşmerge binixûmîne û tenê bêje, 'ez heme' êrîşan dike. Di demên dawî de bi komên 3 û 5 kesî êrîşên xwekujî encam dan. Êrîşên li dijî eniyên Xazir, Mexmûr û Kerkûkê bi vî awayî ne. Hêzên Pêşmerge li hember van êrîşan hişyar û amade ne. Tenê li êrîşa Mexmûrê de 4 Pêşmerge şehîd bûn. Ew jî jiber vê yekê bû ku, çekdarên DAIŞ'ê xwe di nava xelkê medenî de veşartibûn û karîbûn xwe bigehînin vê rexê. Gerdî behsa hatina malbatên ereb jî kir û da zanîn ku her roj gelek malbatên ereb, ji ber zext û zordariya DAIŞ'ê direvin û xwe dispêrin Hêzên Pêşmerge û got: "Tenê li eniya Mexmûr û Guwêrê heta niha nêzîkê 2 hezar 200 û heta 300 malbatan xwe spartina Pêşmerge. Hêzên Pêşmerge jî van malbatan li kampan radigre."

**Hewramî: Tevgera Goran dikare weke mûxalefet bimîne**

Her çar aliyên siyasî yên RHK'ê, bi armanca çalakkirina parlamen û hikûmetê, li Ofîsa Mekteba Siyasî ya YNK'ê ya bajarê Silêmaniyê civînek pêk anîn. Jiber şertên wî nehatine pejirandin, Tevgera Goran beşdarê civînê nebû. Di civînê de bi navê YNK'ê Mela Bextiyar, Hakim Qadir Hemecan ve Omer Fetah, bi navê PDK'ê Cefer Emînkî û Mehmûd Mihemed, bi navê Yekgirtû Xelîl Îbrahîm û Mihemed Ehmed, bi navê Komela Îslamî jî Rêbwar Hemed, Mihemed Hekim û Yasîn Hesen, amade bûn.

Ji aliyê din ve Berpirsê Pêwendiyên Derve yê PDK'ê Hêmin Hewramî bi daxuyaniyekê ragihand ku, şertên ji aliyê Tevgera Goran ve tên sepandin, nayên qebûlkirin. Hewramî da zanîn ku Tevgera Goran bi rêkeftina ligel PDK'ê beşdarê hikûmetê bûye û ev rêkeftin jî binpê kiriye. Ji lewra, ji bo carek din Goran bikare beşdarê hikûmetê bibe, pêwîstî bi rêkeftinek nû dibe. Hêmin Hewramî diyar kir ku divê zûtirîn demî de serokê nû yê parlamenê bê diyar kirin û kabîneya 8'em bê sererastkirin û got ku, Tevgera Goran jî herweke xulên pêşî yên parlamenê, dikare bibe partiya mûxalefetê.

**Bann Ki-moon: Wê civaka navdewletî piştgiriyê bide RHK'ê**

Di destpêka hefteya borî de li bajarê Hewlêrê Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî pêşwaziya Sekreterê Giştî yê Netewên Yekgirtî (NY) Ban Ki-moon, Serokê Banka Cîhanî Jîm Yung Kîm, Serokê Banka Geşepêdana Îslamî Ehmed Elî û Nûnerê Taybetî yê Sekreterê Giştî yê Rêxistina NY'yê li Iraqê Jan Kubis, kir.

Di hevdîtinê de Barzanî behsa wê yekê kir ku gelê Kurdistanê di şerê li dijî terorîstan de gelek qurbanî dane û got ku 'ji bilî şerekî giran, Kurdistan rûbirûyê gefa qeyrana darayî jî bûye û herwiha sedan hezar koçberan jî hewandiye.' Serokê RHK'Ê Mesûd Barzanî balkişande ser sedemên qeyrana darayî û got ku heta niha ti aliyekê li rûyê darayî ve hevkariya Kurdistanê nekiriye û Hikûmeta Iraqê jî pabendê sozên xwe nebûye û ji bo hewandina koçberan alîkarî nedaye RHK'ê. Barzanî herwiha ronahî xiste ser bernameya çaksazî ya Hikûmeta HRK'ê û ragihand ku Hikûmeta Hewlerê pabendî hemû pêver û bingehan dibê ku ji bo çaksaziyê pêwîst in. Barzanî diyar kir ku pêwîst e civaka navdewletî wê yekê ber çav bigre ku beşa zêdetirê giraniya şerê teror û têçûna penaber û koçberan dikeve ser milê Herêma Kurdistanê û daxwaz kir ku li serxistina proseya çaksazî û derbasbûna qeyrana aborî de NY û saziyên cîhanî alîkarî bidin RHK'ê.

Di hevdîtinê de Sekreterê Giştî yê NY Ban Ki-moon jî ragihand ku li gel şanda xwe ji bo nîşandana palpiştî û hevsoziya gelê Kurdistanê hatiye Hewlêrê. Ki-moon tekez li wê yekê kir ku Pêşmerge navekî naskiriye li asta cîhanê de jiber ku di eniya yekem a parastina cîhane de li dijî gefa terorê şer dike. Sekreterê Giştî yê NY diyar kir ku wê civaka navdewletî ji bo derbaskirina qeyrana aborî piştgiriyê bide RHK'ê û herwiha pêngavên ji bo çaksazî û reforman jî erênî nirxand. Serokê Banka Cîhanî Jîm Yung Kîm jî derbarê derbarê hewlên Banka Cîhanî yên ji bo alîkariya HRK'ê agahî dane Barzanî û ragihand ku RHK'ê hêjayî wê yekê ye ku cîhan piştevanê wê bê. Her wiha Serokê Banka Geşepêdana Îslamî Ehmed Elî jî tekez li ser hevsozî û peroşiya Banka Geşepêdana Îslamî ya ligel HRK'ê kir û ragihand ku ew madene li gel Banka Cîhanî ji bo serxistina çaksazî û alîkariya koçberan û her wiha ji bo vegerandina jiyanê ya navçeyên azadkirî, alîkarî bidin RHK'ê.



Rojava - Sûriye:

# Çi li pêşiya Federasyona Rojava ye?



Siwar Bedirxan

Bertekên rejîm û opozîsyona Sûriyê yên li dij Federasyona Demokratîk ya Rojava – Bakûrê Sûriyê ku ji aliyê PYD ve hate îlankirin didomin. Serokdewletê Suriyeyê Beşar Esad daxuyand ku ew federasyonê qebûl nakin û angaşt dike ku kurd li Rojava kêmîne ne. Opzîsyona Sûriyê jî dibêje ku federasyon wê Sûriyê parçe bike. Nûnerên PYD'ê jî li hemberî angaştên rejîm û opzîsyona Sûriyê radigîhinin ku federasyona hatiye ragihandin erdnigarî ye û sîstema federal wê Sûriyê demokratîk bike. Encumena Niştimaniya Kurd ya Sûriyê (ENKS) jî tîne ziman ku PYD manewrayên siyasî dike û doktrîna xwe li ser gelê Rojava ferz dike.

Ji bilî Rêveberiya Şamê û Opozîsyonê, daxuyaniyên DYA û Rûsyayê jî ku eşkere dikin ku ew piştgiriyê nadin federasyonê û alîgirên Sûriyeya unîter in û venexwendina PYD'ê ji bo he-vdîtinên Cenevrê nîşan didin ku wê ambargoyeke siyasî li ser PYD'ê bê pêkanîn.

Ji hêla din firîna balarifên rejîmê li ser Qamişlo û Hesekê û daxuyaniyên bêrêz û biçûkxistina kurdan yên rayedarên Sûriyê jî nîşan dide ku di navbera rejîm û PYD'ê de wê alozî derkevin.

**Brîmo: Rejîm jî opozîsyon jî mafên kurdan nasnakin**

Endamê Polîtburoya PDKS'ê û Rêveberê ENKS'ê Nurî Brîmo ji BasNûçe'yê re axivî û ragihand ku federasyona ku PYD'ê îlan kiriye îdeolojîk û dirûvê rêveberiyeke ku sînorên wê ne zelal in. Brimo got ENKS'ê di 2011'an de eşkere kiriye ku qeyrana Sûriyê wê bi sîstema federal çareser bibe û diyar kir ku federasyona ji aliyê PYD'ê ve hatiye ragihandin, pirsgirêkên Rojava û Sûriyê çareser nake. Brîmo destnîşan kir ku rejîm û opzîsyona Sûriyê li hemberî kurdan di nava helwesteke şovenîst dane û wiha axivî: "Rejîm û opzîsyona Sûriyê nêzîkatiyên nijadperest nîşan didin. Li dijî federasyona PYD'ê îlan kirî dertên. Li hember ne naskirina mafên kurdan dibin yek. Rejîm jî opozîsyon jî mafên kurdan nasnakin." Nûrî Brîmo destnîşan kir ku li herêmê Sykes-Picoteke nû li ser kurdan tê ferzkirin û diyar kir ku kurd destûrê nadin vê yekê û divê li Rojava kurd siyaseteke netewî bişopînin.

**Îsmaîl: Pêdiviya kurdan bi Sûriyeke demokratîk tune ye**

Endamê ENKS'ê Mihemed Îsmaîl jî li ser Sîstema Federal a Demokratîk ya Rojava – Bakûrê Sûriyê ji rojnameya me re nirxandin kir û got ku ev sîstem dewama siyaseta PYD'ê ya yek-parêz e ku ev 4 sal in dimeşîne. Îsmaîl ragihand ku PYD bi tena serê xwe tevdigere û li Roja-va hewldidin ku tiştên nû biceribînin. Îsmaîl her wiha eşkere kir ku mînaka sîstema federal a TEV-DEM û PYD'ê ragihandiye li cîhanê tune ye û axaftina xwe wiha domand: "Sîstemên federal an li gor bingiheke etnîkî an jî li gor sînorên erdnigarî tên destnîşankirin. Nayê zanîn ku ka Sîstema Federal a Demokratîk ya Rojava – Bakûrê Sûriyê kîjan herêman digire nava xwe. Heleb jî, Reqqa jî û Deyrezor jî li Bakûrê Sûriyê cih digirin. Di bernameyên wan de ji bo kurdan, Kurdistanê tiştek tune ye. Pêdiviya kurdan bi Sûriyeke demokratîk tune ye."

**"PYD edebiyata demokrasiyê dike"**

Endamê ENKS'ê Îsmaîl di dirêjiya axaftina xwe de got ku PYD li Rojava di nava xebatên ne demokratîk de ye û diyar kir ku demokrasî û sîstema federal hevdu digirin, lê belê kiryarên PYD'ê ne demokratîk in. Îsmaîl amaje bi wê yekê kir ku ENKS ne biyanî sîstema federal e û got, "Demokrasî û federasyon hevdû temam dikin. Dibe ku dewletek ne demokratîk be, lê divê sîstemeke federal demokratîk be. Di modela federasyonê ya ku ENKS pêşniyar dike de kurd xwe bi rêve dibin. Pêwendî û hiqûqa navnetewî ya kurdan hatiye destnîşankirin. Bi he-vokên ne zelal û edebiyata federasyona demokratîk, sîstema federal nayê avakirin."

Her wiha Îsmaîl ragihand ku ENKS sîstema li Herêma Kurdistanê û ya li welatên YE ji xwe re mînak digire û ji bo ku mafên kurdan bidest bixe dîplomasiyê dike. Îsmaîl di dawiya gotinên xwe de destnîşan kir ku tu cudahî di navbera pergala kanton û federasyona PYD'ê ragihandî de tune ye.

**Evdo: Sîstema federal wê Sûriyê hevgirtî bike**

Hevserokê Meclîsa Zagonsaz ya Kobanê Fewziya Evdo jî di derbarê Sîstema Federal a De-mokratîk ya Rojava – Bakûrê Sûriyê de agahî dan BasNûçe'yê û ragihand ku Komîteya Pey-mana Civakî ya Lijneya Rêxistinkirina Sîstema Federal a Demokratîk ya Rojava – Bakûrê Sûriyê hatiye damezrandin û got ku ev komîte bi Yekitiya Netewî ya Kurdên Sûriyê, En-damên Civaka Demokratîk, TEV-DEM, Partiya Çep ya Kurdên Sûriyê re civînan pêk tîne û xebatan dimeşîne. Evdo eşkere kir ku di van civînan de bandorên Komîteya Peymana Civakî ya Lijneya Rêxistinkirina Sîstema Federal a Demokratîk ya Rojava – Bakûrê Sûriyê yên li ser herêmê û Sûriyê tên niqaşkirin û radigihîne ku wê sîstema federal di navbera gelên herêmê de dîyalog û aramiyê bîne.

**"Em li Pragê nunertiyê vedikin"**

Fewziya Evdo balê kişand ser daxuyaniyên Rûsya, DYA û welatên YE'yê yên ji bo piştgiriya federasyona Sûriyê û destnîşan dike ku Rojava bi awayekî fîîlî heye û DYA û Rûsya wê rewşa Rojava qebûl bikin. Evdo wiha dibêje: "Em ê biryara çarenûsa xwe û dirûvê rêveberiya xwe bidin. Dema me bi DAIŞ'ê re şer dikir, me ji wan destûr nexwest. Ji damezrandina rêveberiya xwe jî em ji tu kesî destûr naxwazin. Me modeleke demokratîk û aştîxwaz ava kir, ev wê Sûriyê hevgirtî bike. DYA û Rûsya jî wê hebûna me qebûl bike." Her wiha Evdo li ser an-gaştên vekirina nunertiya PYD'ê li paytexta Komara Çekê Pragê jî got ku şandeke ku rayedarên YPJ û PYD'ê jî di nav de cih digirin çûye Pragê û diyar kir ku PYD piştî Mos-kovayê wê li Pragê jî nunertiya xwe veke."



> Federasyona ku bi navê "Sîstema Federal a Demokratîk ya Rojava – Bakurê Sûriyê" di 17'ê Adarê de li Rojava hat îlankirin heta niha jî dibe mijara nîqaşan. Rejîma Sûriyê li dij feder-asyonê derdikeve û hêzên navnetewî jî destnîşan dikin ku ew piştgiriyê nadîn federasyona ku yek alî hatiye ragihandin. ENKS jî diyar dike ku qeyrana Sûriyê wê bi modela rêveberiya fed-eral çareser bibe, modela federasyonê ya PYD'ê zelal û demokratîk nabîne.

**Muslim: Li Parisê jî nûnertî tê vekirin**

Li aliyê din Hevserokê Partiya Yekîtiya Demokratîk Salih Muslim di hevpeyvîneke ligel tele-vizyona France 24 de ragihand ku di demek nêzîk de ew ê nûneratiya xwe li Parîsa paytextê Fransayê vekin. Salih Muslim eşkere kir ku mijara vekirina nûneratiya Rojavayê Kurdistanê mijarek ciddî ye û kar li ser tê kirin û dê di navebra mehekê de ew nûneratî bi fermî were danîn. Muslim di beşeke din a axavtinên xwe de tekezî li ser guncawbûna sîstema federaliyê bo hemû Sûriyê û Rojavayê Kurdistanê kir.

Di berdewamiya axaxtina xwe de Hevserokê PYD'ê li ser pirsa "Gelo ragihandina federaliyê bandorek nerênî nekiriye ser pêwendiyên PYD'ê ligel DYA û Rûsya?" da û got ku berovajiyê wê yekê têkiliyên wan xurt û bihêz in û di warê leşkerî de alîkariyên DYA'yê ji bo Hêzên Sûriya Demokratîk (HSD) jî zêdetir bûne. Li ser hevbengirtina PYD'ê û aliyên kurdî bi DYA û Rûsya re bo ragihandina sîstema federaliyê de, Salih Muslim destnîşan kir, ku ew pirs pirseke navxweyî ya Sûriyê ye û dê xelkê ku li deverên Rojava û bakurê Sûriyê dijîn, biryarê li ser qedera xwe bidin.

Muslim li ser pêngava federaliyê jî wiha axivî: "Me ji Rûsya re got, ku we bi xwe jî li welatê xwe sîstema federaliyê heye, we herêm û komarên federal di Federasyona Rûsya de hene, ji ber ku gellek netew û pêkhatyeên cuda li Rûsya dijîn. Herwiha Amerîka bi xwe jî sîstema federaliyê cîbicî dike. Çima ew dê li dijî biryara xelkê me derkevin. Ev yek mijareke navxweyiyê yê me ye û me bo biryardana derbarê ragihandina federaliyê de jî pirs li ti kesî nekir."

**Operasyona Minbîcê destpê dike**

Hat zanîn ku YPG û Hêzên Sûriya Demokratîk ku dawî li operasyonên li devera Ezaz û Bakûrê Helebê anîn, amadekariyên operasyona Cerablûs-Minbcê dikin. Li gor agahiyên ji herêmê tên balafirên hêzên hevpeyman ku beriya 3 rojan kampên DAIŞ'ê yên li herêmê bombebaran kirin, êrişên xwe yên li ser baregehên DAIŞ'ê yên li Minbîcê didomîn e. Ro-jnameger Mihemed Bilo ku operasyonên li herêmê dişopîne ji BasNûçe'yê re eşkere kir ku YPG'ê ji Minbîc û derdora wê re cebilxane û yekîneyên leşkerî şandine. Her wiha Bilo ra-gihand ku YPG wê di demeke nêzde operasyonê lidar bixe û balafirên DYA'yê herêmê bor-dûman dikin. Bilo wiha dawî li axaftina xwe anî: "Balafirên DYA keşfê dikin û agahiyan kom dikin. DYA herêmê dişopîne û bargehên DAIŞ'ê bombebaran dike. YPG jî din ava amadekar-iyan de ye û wê di demeke nêzde operasyon destpê bike. Eger DAIŞ ji Minbîc û Cerablûsê were derxistin, bajarên kurdan dibin yek. Cihên stratejîk di destê YPG'ê de ne, YPG wê DAIŞ'ê ji Minbîcê derxîne."



**Rêyên bi ser Reqqayê ve tên bordûmankirin**

Rewangeha Sûriyê ya Mafê Mirovan jî eşkere kir ku balafirên şer yên hevpeymaniya nav-dewletî, gundewarên başûrê Hesekê yê di destê DAIŞ'ê de Hesekê topbaran kir. Rewangiha Sûriyê ya Mafên Mirovan ragihand ku balefirên şer ên bi ser hevpeymaniya navdewletî ya şerê dijî DAIŞ'ê dikin, xal û bargehên DAIŞ'ê li gundê Deyşiyê yê bi ser başûrê Hesekê ve topbaran kirin û di encam de hijmarek zede ya kuştî û birîndar ji çekdarên rêxistinê çêbûn. Her wiha ji bilî ku hin erebe û yekîneyên teknîkî jî di encama bombebaranê de hatin ruxandin. Li aliyê din amaje li ser wê yekê heye ku ew ê di demeke nêzde operasyona rizgarkirina Reqqayê jî destpê bike û hevpeymaniya navdewletî rê li ber HSD'ê vedike da ku di warê be-jayî de operasyonê birêve bibe. Angaşt li ser wê yekê jî heye ku serdana John Kerry Wezîrê Karê Derve yê DYA ya ji bo Moskovayê jî ji bo hemahengiya operasyona Reqqayê bû ew ê di demeke nêzde hevpeymaniya navdewletî û HSD beşdarî operasyona rizgarkirina Reqqayê bibin.

**Artêşa Tirkiyê Qamişlo topbaran kir**

Li aliyê din hat zanîn ku Artêşa Tirkiyê li ser sînorê Rojava û Bakurê Kurdistanê bajarê Qamişlo yê Rojavayê Kurdistanê da ber topan. Li gor zanyariyên medyayên nêzîkî PYD'ê, leşkerên Artêşa Tirkiyê yên li ser sînor nav bajarê Qamişlo topbaran kirin. Hat ragihandin, ku 3 gulleyên tope li nav bajêr û li cihê ku welatiyên sivîl lê dijîn, ketin. Her wiha hat eşkerekirin ku di encama topbaranê de tu zirarên canî çê nebûne, lê zirarên darayî gihîştin cihên ku top lê ketine. Li malperên bi ser PYD'ê yek ji wan gulleyên tope li Mizgefta Nebî Salih ketiye û di encamê de zirar gihîştiye mizgeftê. Herwiha gulleyeke tope jî li mala welatiyekî sivîl li taxa Xerbî ya Qamişlo ketiye û zirarek mezin gihandiye wê malê. Gulleya sêyem jî di nav baza-rekê de ketiye û zirarên darayî gihand milkên welatiyên sivîl. Ji aliyekê din ve medyayên nêzîkî PYD'ê ragihandin, ku leşkerên Tirkiyê di saetên sere sibehî de gulle bi ser bajêr de reşandin. Li gor zanyariyan gulle li mal û otomobîla welatiyekî sivîl ketin. Di bûyerê de tu zirarên canî çênebû, lê belê zirar gihîşt mal û otomobîla wî welatiyê Qamişlo.

Li aliyê din jî hat zanîn ku Artêşa Tirkiyê li ser sînorê Efrînê û Bakurê Kurdistanê sînorê nû lê dike. Li gor çavkaniyên herêmî di navbera gundê Bêka yê navçeya Bilbilê yê Efrînê û Bakurê Kurdistanê de dest bi avakirina dîwarekî nû tê kirin.

Artêşa tirk beriya demekê zerîpoşan li pêşberî gundê Bêke yê navçeya Bilbilê bicih kiribûn û li wir tevgera leşkeran zêde kiribû. Çend roj berê jî leşkeran dest bi avakirina dîwar kirin. Bilindbûna dîwarê ku hîn çêkirina wî didome, 4 metre û firehiya wî jî 3 metre ye. Leşker her wiha gundiyên Bêke jî aciz dikin û bi gulebaranan, nahêlin ku bi rehetî di nava zeviyên xwe de kar bikin.

BasNûçe 04 - 10 Avrêl 2016 HEVPÊYVÎN 09

Dr. Nasih Xefûr Remezan:

# Derûniya kurd bo serxwebûnê amade ye

"Ji aliyê derûnî û rûhî kurd ji bo serxwebûnê amade ne. Kurdan hemû rêyên din jî ceribandin e. Niha ji bilî ragihandina serxwebûnê tu rêyek din jî nemaye. Ji ber ku kurd êdî nikarin di bin desthiladariya şovenîzma ereban de an jî desthilatek din de bijîn."

**Mehmet Salih Batırhan/Zeyat Cebo**

Şîeyên ku piştî şikestxwarina Saddam li Iraqê bûn xwedî desthilat bi destêwerdana Îranê, rikberiya mezhebî bi ser Iraqê de zal kirin. Li aliyekî hikûmetên şîe, fişar anîn ser xelkê sunne mezheb û li aliyê din jî mafê kurdan ê di Destûrê de hatine tekezkirin nehat bi cihanîn. Her wiha nebûna wê istikrara siyasî ya Iraqê bû hokarê ku DAIŞ li navçeyê serdest bibe.

Duristbûna DAIŞ'ê û siyaseta hikûmetên şîe di nava çend salên dawî de tesîreke mezin li Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) jî kir. Kurdistan bi şerê DAIŞ'ê û qeyranên aborî re rû bi rû ma. Siyaseta kurd û fedekariya Pêşmergeyan RHK'ê ji nava wê proseyê derbas dibe û pêvajoya bicihanîna xeyala kurdan pêngav bi pêngav destpê dike. Tê çaverêkirin ku di Cotmehê de rapirsîna serxwebûnê li Kurdistanê bi rêve biçe û gelê kurd çarenûsa xwe diyar bike. Wezîrê berê yê Perwerdeyê û Rawêjkarê Serokê Herêma Kurdistanê yê berê Dr. Nasih Xefûr Remezan ji BasNûçe'yê re aixivî û proseya serxwebûnê danûstendinên Hewlêr û Bexdayê ji şîrove kir. Dr. Remezan eşkere kir ku ji bilî serxwebûnê rê li ber kurdan nemaye û gelê kurd jî êdî desthilata Iraqî qebûlnake.

**Peywendiyên dîrokî yên kurd û ereban li Iraqê ber bi ku ve diçin?**

Kurd ji seranserê dîrokê ve daxwaza serxwebûn û azadiya xwe dikin. Bi vî armancî jî gelek car serhildan. Yek ji wan serhildanên mezin, serhildana Şêx Ûbeydûllahê Nehrî ye. Herwiha, serhildanên Şêx Mehmûd Berzancî, Simko, Şêx Seîd, Seyîd Riza, serhildana Agirî û serhildana Barzaniyan de jî kurdan weke hemû gelên din daxwaza mafên xwe kirin. Weke niha, berî jî kurdan herdem beriya dest biavêjin çekan, daxwaza aştî û wekheviyê kirine. Me bivê û nevê jî em ligel fars, ereb û tirk û gelên din ên herêmê cîran in. Rojhilata Navîn welatê van gelan hemûyan e. Em naçarin pêk ve bijîn. Herwiha ew jî nikarin bêyî kurdan bijîn. Lê divê bi taybet tirk, fars û ereb bizanin ku heta gelê kurd negehe mafên xwe û azad nebe, li Rojhilata Navîn jî aramî, aştî û tebayî pêk nayê.

Di dîrokê de, ji bo kurd jî bibin xwedî dewlet û statû, çendîn caran derfet çêbûne. Di sala 1945 û 46'an de li Rojhilatê Kurdistanê Komara Mahabadê hate damezrandin. Mixabin temenê wê tenê 11 meh bû. Li Iraqê jî piştî Şoreşa 14'ê Tîrmehê ku sîstema padîşahî nema û bû komar, derfet pêk hat ku maf bidin kurdên Başûrê Kurdistanê. Di maddeya sê ya yekem Destûra Demkî ya Komara Iraqê de tê gotin ku kurd û ereb di vî welatî de hevbeş in û xwedî heman mafan in. Lê pêwîstiyên vê maddeyê nehatine cîbicî kirin. Ji ber vê yekê jî kurd naçar man ji sala 1961 heta 1975 û paşî ji 1975 heta 1991'an li dijî rejîmên Iraqê şer bikin. Ji ber bi aştî mafên kurdan nehate dayîn, kurd naçar bûn bi çek û şer parastina mafên xwe bikin. Piştî raperîna sala 1991'ê piraniya xaka Başûrê Kurdistanê kete bin kontrola Hêzên Pêşmerge. Bi biryara Netewên Yekbûyî ya jimare 688, hêzên Rejîma Baas ji nekarî destkariya xaka Başûrê Kurdistanê bike. Ev biryar destpêk û derfetek bû ku li Başûrê Kurdistanê herêmek serbixwe bê avakirin.

**Çima piştî raperîna 1991'ê serxwebûn nehat ragihandin?**

Me wê demê ji bo çareseriya pirsa kurd li Iraqê, nexşerêyek danî. Di 4'ê Cotmeha sala 1992 de Rêveberiya Federalî ya Herêma Kurdistanê hate ragihandin. Di çarçoveya yekîtiya Iraqê de federalizm weke baştirîn rê hate destnîşankrin. Ev biryar bi bêyî şêwir an jî razîbûna tirk, ereb û farisan hate girtin. Herwiha raya Bexdayê jî nehate girtin. Biryarek yek alî bû. Dikariya biryara serbixwebûnê bihata girtin. Lê şert û mercên herêmê û yên cîhanê hatin berçavgirtin û biryara federalîzmê li ser vê yekê guncaw hate dîtin.

Herêma Kurdistanê ji sala 1991 hate 2003'ê ji aliyê siyasî, civakî, aborî, çandî, hiqûqî û gelek aliyên din ve roj bi roj geşedan jiya û pêş ket. Rewşa bajar û navçeyên kurdan ji rewşa navçe û bajarên din ên Iraqê gelek baştur bû. Vê geşedanê piştî sala 2003'ê jî berdewam kir. Welatên biyanî jî hêdî hêdî rû li Kurdistanê kirin. Daxwaza danîna pêwendiyan kirin. Di destpêkê de Tirkiye û heta Îranê jî li Iraqê herêmek federal ê kurdî qebûl nedikirin. Lê gav bi gav ev feraset hate guhertin, Tirkiye, Îran, welatên erebî û yên Rojava hebûna kurdan qebûl kirin. Piştî ku di sala 2003'ê de rejîma Saddam hilweşiya û rewşek nû derkete holê. Derfetên baştur peyda bûn û kurdan wê demê jî dikariya biryara serxwebûnê bidin. Lê dîsa jî şert û mercên navxwe û yên derve hatin berçavgirtin. Kurdan xwestin di çarçoveya Iraqa federal de bibin hevparên rasteqîne. Destûra Iraqa Federal û Demokratîk jî li ser vê bingehê hate nivîsandin û kurdan jî di nivîsandina destûra Iraqê de rolek sereke lîstin. Di destûrê de ev yek jî hatiye destnîşankirin ku eger hat û xalên destûrê ji aliyê rexekê ve nehate cîbicîkirin, rexên din dikarin biryarên xwe bixwe bidin.

**Hikûmetên piştî Saddam Hûsên hatin ser desthilatdariyê helweseteke çawa li hember kurdan nîşan dan?**

Di dema destpêka avakirina rêveberiya nû ya Iraqê de erebên şîe piştgirî didan kurdan. Lê jiber piraniya Iraqê ew bûn û desthilat di destê wan de bû, gav bi gav xwestin guvaşê bixin ser kurdan û herwiha pêwîstiyên destûrê jî binpê kirin. Ji destpêka sala 2014'an ve bûdçeya Herêma Kurdistanê birîn, mûçeyên Pêşmergeyan nadin. Parlamena Iraqê û heta artêşa Iraqê bi piştgiriya kurdan ji nû ve hate damezrandin. Lê kurd ji artêşê hatin vederkirin û niha tenê ji sedî 2 yê artêşê ji kurdan pêk tê. Ew kesên niha wezîr û berpirsê hikûmeta Iraqê ne, di dema xwe de li Kurdistanê mêvan bûn, li Kurdistanê xwendina xwe qedandin û piştgiriya kurdan girtin, lê niha mixabin hindek ji wan bê wefa derketin li hember kurdan. Jiber vê yekê em dibînin îro rewş hatiye guhertin. Kurd nikarin weke daxwaza ereban û di bin barê kiryarên wan de bijîn û dest ji mafên xwe berdin. Ne bi şer lê bi aştî û bi hev têgehiştin, kurd dixwazin çarenûsa xwe diyar bikin. Em dibêjin; 'Bira bira ye, kîs cûda ye.'

Dîrok li ber çav e. Hemû desthilatên Iraqê yên ku şerê kurdan kirin, mafên kurdan înkar kirin, nikarîn li ser desthilatê bimînin û hilweşiyan. Heger desthilatên îro jî bixwazin li ser vê kevneşopiyê bimeşin wê aqûbeta wan jî heman awayî be. Kurd ne li dijî tirk, faris û ereban in, tenê dixwazin weke hemû gelên din mafên wan jî hebe.

**Gelo ew ê Iraq razî bibe ku kurd çarenûsa xwe diyar bikin?**

Iraq hê ji destpêkê ve bi xeletî hate damezrandin. Iraq li ser gelên Iraqê, li ser ereb, kurd, tirkmen û gelên xirîstiyan hate ferzkirin. Heta melîkê ku ji bo Iraqê anîn jî, ji derve hate hinardekirin. Di sala 1922'yan Melîk Feysel ku yekem melîkê Iraqê ye, ji Erebîstana Siûdî anîn û kirin serok. Ji wê demê heta niha, sîstema siyasî ya Iraqê li ser heman xeletuyan dimeşe. Rewşa piştî sala 1991 û herwiha 2003'ê rewşên cûda ne ku desthiladariya Iraqê naçar ma ku hebûn û statûya kurdan nas bike. Çarenûsa navçeyên ku nakokî li ser hebûn û ne di bin desthiladariya Kurdistanê de bûn, bi madeya 140 ya Destûra Bingehîn a Iraqê hatin diyarkirin.

Heta hatina DAIŞ'ê jî rêveberiya Bexdayê derbarê van navçeyan de pêwîstiyên destûrê pêk neanî. Di wateyekê de hatina DAIŞ'ê ev pirsgirêk jî yek alî kir. DAIŞ'ê Mûsil û Enbar dagir kir. Xwest êrîşê Hewlêr û Kerkûkê jî bike û dagir bike. Lê Hêzên Pêşmerge berevaniya Kurdistanê kir û piştî vekêşana Artêşa Iraqê, ew navçeyên nakok jî hatin rizgar kirin. Ew navçe bi xwîna Pêşmerge bi azatiya Pêşmerge hatine rizgarkirin. Wate, pirsgirêka sînoran jî li gel ereban û Iraqê, bi xwîn hatiye çareserkirin. Li ser wê yekê maye; gelo Iraq ji vê yekê razî ye yan ne razî ye? Bêguman desthiladarên îro yên Iraqê, herwekî desthiladariya Baas ji vê yekê ne razî ne. Lê kurd li hêviya hindê nabin ka Iraq razî dibe an nabe. Ew razî bibin û nebin jî, divê kurd bi guftugo, bi axaftin, bi rêbazên aştiyane ji wan re bêjin ku serxwebûn nafê kurdan e û berjewendiya hemû aliyan di vê yekê de heye.

**Di bernameya kurdan a serxwebûnê de çi heye? Divê kurd ji kîjan azmûnê îstîfade bikin?**

Niha li pêşiya kurdan referandûm heye. Ev e jî nayê wê wateyê ku piştî referandûmê yekser serxwebûn bê ragihandin. Ji ber ku ne merc e yekser piştî referandûmê pêngavek wiha bê avêtin. Weke mînak; li Başûrê Sûdanê di meha Sibatê de rapirsîn hate encamdan û di meha Hezîranê de serxwebûn hate ragihandin. Herwiha li Kosovayê, di 17'ê Sibata 2008'ê li parlamenê biryara serxwebûnê hate ragihandin. Di destpêkê de Sirbîstan û Rûsya jî li dijî vê yekê bûn. Lê em dibînin ku hemû cîhanê serxwebûna Kosovayê nas kir. Dîsa mînaka Qirimê heye. Qirim giravek e. Di serdema Yekîtiya Sovyetan de beşekê ji Ûkrayna bû. Lê di sala 2014'ê de gelê Qirimê gotin ku 'em naxwazin ligel Ûkrayna bimînin' û serxwebûna xwe ragihandin. Lê jiber ev pêvajoyek bi êş bû, Qirimiyan biryara federalîzmê ligel Rûsyayê dan.

Di van hersê mînakan de mirov dikare gelek ezmûnan derbixe. Di mînaka Sûdanê de jî tê dîtin ku, piraniya welatên ereb li dijî perçebûna Sûdanê bûn. Di mînaka Kosovo de em dibînin hêzek weke Rûsyayê, ku hêzek cîhanî ye, li dijî serxwebûna Kosovayê bû. Di mînaka Qirimê de jî em dibînin welatên rojava û Ûkrayna li dijî cûdabûna Qirimê bûn. Lê di encam de li van hersê welatan jî cûdabûn û serxwebûn pêk hat. Wate mirov nikare bêje ka Iraq amade ye yan ne amade ye. Yan jî mirov xwe li hêviya guncawbûna şert û mercan bigre. Jixwe Iraq nemaye. Piştî sala 2003'ê kurdan gelek hewl da ku Iraq a demokratîk û federal weke yekparçe bimîne. Piştî hatina DAIŞ'ê Iraq bixwe bi fîîlî bû sê perçe. Di vê rewşê de, DAIŞ bimîne yan nemîne jî, divê hesaba suneyan bê kirin. Wate eger Iraq nema be, divê kurd û aliyê din çi bikin? Bêguman divê rêzê ji biryarên hev re bigrin.

**Kurdistan ji serxwebûnê re amadeye an na?**

Kurdistan welatek pir dewlemend e û herêmek stratejîk e. Rojhilat û Rojava bi hev girê dide, derwazeya Asya û Ewropayê ye. Ji aliyê kesayetî û beşerî ve navçeyek dewlemend e. Kurd yek ji wan gelan e ku zindî ye û çalak e. Piraniya tak û welatiyên kurd, ligel zimanê xwe, zimanek din an jî çend zimanên din dizanin. Herwiha Kurdistan ji aliyê çavkaniyên xwe yên xwezayî ve jî welatek dewlemend e. Ji aliyê berhemên petrolê ve, Kurdistan yek ji herêma herî dewlemend ê cîhanê ye. Ligel vê yekê, axa Kurdistanê bi xêr û ber e. Gelek cûreyên madenên dewlemend jî li Kurdistanê peyda dibin. Kurdistan çavkaniyek girîng a ava şêrîn û paqij e ku îro av di cîhanê de ji petrolê girîngtir û giranbihatir e. Herdu çavkaniyên pîroz ên avê, ku weke Dicle û Ferad tên binavkirin, ji Kurdistanê derdikevin.

Ji aliyê derûnî û rûhî kurd ji bo serxwebûnê amade ne. Kurdan hemû rêyên din jî ceribandin e. Niha ji bilî ragihandina serxwebûnê tu rêyek din jî nemaye. Ji ber ku kurd êdî nikarin di bin desthiladariya şovenîzma ereban de an jî desthilatek din de bijîn. Di warê aborî de, dibe ku Herêma Kurdistanê di destpêkê de tengaviyek mezin bijî. Ku bawer nakim rewşa aborî ji îro xirabtir be. Jixwe bûdceya Kurdistanê hatiye birîn û di bin guvaşek aborî de ye.

**Nûnertiyên gelek dewletan li Herêma Kurdistanê heye. Gelo ev dewlet piştgiriya serxwebûnê dikin?**

Heta serxwebûn neyê ragihandin, mirov nikare derbarê helwesta van welatan de tiştekî zelal bêje. Lê ew nabêjin em li dijî serxwebûna we ne, berovajî dibêjin mafê we heye. Ya girîng ew e ku em bixwe bawerî bi pêwîstî bizanin û bêyî ku ligel aliyekê bişêwirin, serxwebûnê ragehînin. Mînaka ragihandina federalîzma Herêma Kurdistanê ya sala 199'an li ber çavê me ye. Wê demê Baxda jî, Tehran û Enqere jî li dijî vê biryarê bûn. Lê me dîsa biryara xwe ragihand û pêkanî û sepand. Wate ev biryar dimîne ser kurdan bixwe. Hemû aliyên kurdî li Bexdayê xwedî heman helwestî ne û mafên kurdan diparêzin. Li navxwe nakok jî bin, li hember Bexdayê yekgirtî ne.

"Piştî sala 2003'ê kurdan gelek hewl da ku Iraqa demokratîk û federal weke yekparçe bimîne. Piştî hatina DAIŞ'ê Iraq bixwe bi fîîlî bû sê perçe. Di vê rewşê de, DAIŞ bimîne yan nemîne jî, divê hesaba suneyan bê kirin. Wate eger Iraq nema be, divê kurd û aliyê din çi bikin? Bêguman divê rêzê ji biryarên hev re bigrin."

Di sala 2005'ê de, ligel hilbijartinên giştî yê Iraqê, li seranserê Kurdistanê rapirsiyek ne fermî jî hate kirin. Lê ew rapirsî ji aliyê saziyên medenî ve hate kirin û li gor encaman ji sedî 98'ê gelê kurd dengê xwe dane serxwebûnê. Kopiyek encamên vê rapirsinê şandine Netewên Yekgirtî jî. Em dikarin vê rapirsiyê îro dubare jî bikin. Divê ev rapirsî bê kirin û divê serxwebûn jî bê ragihandin. Bêyî ragihandina serxwebûnê, teqez pirsa kurd çareser nabe. Bêyî ragihandina serxwebûnê tu rê û rêbazek ne maye.

**Pêkhate û kêmîneyên olî yên Kurdistanê çawa nêzîkî mijara serxwebûnê dibin?**

Pêkhateyên Kerkûkê, ereb, tirkmen û asûrî jî dixwazin ligel Kurdistanê bimînin û piştgiriyê didin rapirsinê. Bêguman ew jî di çarçoveya Kurdistana Serbixwe de dixwazin mafên wan bê misogerkirin. Helbet divê dema serxwebûn bê ragihandin, mafê hemû gel û pêkhateyan jî bê berçavgirtin û misogerkirin. Jixwe Rêveberiya Herêma Kurdistanê ê di vê mijarê de rêveberiyek demokratîk e û mafê hemû pêkhateyan tê de hatiye destnîşan kirin û parastin. Di dema hilbijartina yekem a Parlamena Kurdistanê de, şêniya asûrî û kildanî jî hate hejmartin. Bi giştî 28 hezar dengên aşûrî û keldaniyan hebûn. Wê demê ji bo her kursiyek li parlamenê 30 hezar deng pêwîst dikir. Lê me li Parlamentoya Kurdistanê 5 kursî dane mesîhiyan. Li Başûrê Kurdistanê çend gundên ermenan hene ku ew jî li herêma Zaxo dimînin. Lê dîsa jî kursiyeke wan li parlamenê heye. 5 kursiyên tirkmenan jî heye. Herwiha dema serxwebûn hate ragihandin, divê kursiya ereban jî hebe û ew jî bikarin bibin xwedî nûner. Jiber ku li Kerkûk û herêmên din ên, ereb jî hene. Di vî mijarê de Kurdistan pabendê hêmayên demokrasiyê ye.

**Gelo psîkolojiya civaka kurd û baweriya wan a serxwebûnê dikare bibe çareseriya nakokiyên siyasî?**

Li Kurdistanê tu aliyek siyasî nikare bêje ku 'ez li dijî serxwebûnê me.' Serokê Herêma Kurdistanê Serok Mesûd Barzanî, Partiya Demokrata Kurdistanê û hemû hevpeymanên wê, gihiştine wê biryarê ku dem dema serxwebûnê ye. Îro baştirîn dem e bo ragihandina serxwebûnê. Serok Mesûd Barzanî bixwe jî got ku piştî ragihandina serxwebûnê ew êdî nabe Serokê herêmê. Şert û merc jî vê gavê ji bo vê yekê, ji her demî zêdetir guncaw in. Aboriya Kurdistanê têra dabînkirina hemû pêwîstiyan dike. Kurdistan di warê pêwendiyên dîplomatîk de jî deriyê xwe bo cîhanê vekiriye û ligel gelek welatên cîhanê, bi awayekî serbixwe di nava danûstandinan de ye. Gelek serokên dewletan û wezîrên derve yên dewletan jî serdana Kurdistanê dikin.

Di herêmê de bi giştî jî pêgeh û nêzîkatiya dewletan û siyaseta wan a li hember kurdan hatiye guhertin. Ya din jî siyaseta giştî li ser berjewendiyan tê damezrandin. Divê pêwendiyên kurdan ligel hemû aliyan hebe. Nabe ku kurd dijminatiyê ligel tu aliyekê bike. Ewê ne dostê me jî be, qet nebe divê em pêşiya dijminatiya wan bigrin. Ewên biryara dostaniya kurdan nedane jî divê em xwe bigehînin û bikin dostê kurdan. An ku pêwîstiya kurdan bi hemû cîhanê hete ya cîhanê jî bi kurdan heye. Gelek welatên dûr dixwazin pêwendiyên xwe ligel kurdan pêş bixin. Rûsya yekem welat bû ku di sala 2007'ê de li Herêma Kurdistanê nûnertiya xwe vekir. Îro em binerin bi dehan welatan nûnertî li Hewlêrê danîne. Niha Kore ya Başûr dixwaze konsolxaneya xwe li Hewlêrê veke. Eve jî berferehbûna pêwendiyan nîşan dide. Gelek welatên din dixwazin bêyî vegerin Bexdayê, rasterast ligel Kurdistanê pêwendiyan pêş bixin.

Akademiya Leşkerî ya Zaxoyê

# Jinên fermandar bo bereyê amade ne

Di 69 saliya salvegera sêdaredana pêşengê Komara Mahabadê, Qazî Mihemed de, li Akademiya Leşkerî ya Zaxoyê 201 jinên fermandar xula xwe bi serkeftî qedandin û dest bi erka xwe kirin. Di rêwresma derçûna xulê de Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) û Fermandeyê Giştî yê Artêşa Kurdistanê Mesûd Barzanî diyar kir ku baweriya wî bi lehengiya Pêşmergeyên jin heye û got, “Navê Pêşmerge di cîhanê de bûye cihê serbilindiya kurdan û cîhan jî şanaziyê bi kur û keçên Pêşmerge dike.”

Roja 30’ê Adarê, li navçeya Zaxo ya ser bi bajarê Duhokê, li Akademiya Leşkerî ya Zaxoyê, rêwresma derçûna xula 21’emîn a perwerdehiya leşkerî hate bi rêveçû. Di rêwresmê de 201 jinên fermandar ên Pêşmerge, bawernameyên xwe wergitin û wek efserên nû di nav yekîneyên leşkerî yên Pêşmergeyên Kurdistanê de, dest bi kar kirin.

Di rêwresmê de Serokê RHK’ê û Fermandeyê Giştî yê Artêşa Kurdistanê Mesûd Barzanî, Şêwirmendê Civata Ewlekariya Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî, Fermandarê Pêşmerge Zeîm Elî, Fermandarê Akademiya Leşkerî ya Zaxoyê Ferîq Şehab Ehmed, konsol û nûnerên welatên biyanî, siyasetmedar û xelkê Zaxoyê jî amade bûn.

Di rêwresmê de Fermandarê Akademiya Leşkerî ya Zaxoyê Ferîq Şehab Ehmed axivî û got ku akademiya wan heta niha 21 xulên perwerdeyê pêk anîne û heta niha 6 hezar û 197 fermandar pêgehandine û ev fermandar niha di nava yekîneyên leşkerî yên Hêzên Pêşmerge û Artêşa Iraqê de xizmetê dikin. Şehab Ehmed behsa girîngiya vê xulê jî kir û got ku eve yekem xule û taybet e ku jinên fermandar ji vê xulê derketune. Ehmed got ku di bin pileyên herî germ ê havînê û di bin pileyên herî sar ê sermayê de jî van jinên fermandar wane û rahênanên xwe bi serkeftî encam dane û xweragiriya xwe selimandine. Fermandarê Akademiya Leşkerî ya Zaxoyê Ferîq Şehab Ehmed daxuyand ku baweriya wî bi van jinên fermandar heye û wê bikarin di bin hemû şert û mercan de ji bo parastuna ax û gelê kurd xebatê bikin. Ehmed daxuyand ku Serokê RHK’ê Mesûd Barzanî ji destpêkê heta niha ji bo kar û barên akademiyê bi serkeftî bin, gelek hewldaye û herdem girîngî daye. Lewma jî bi navê akademiyê spasiya xwe araste kir.



Li RHK’ê pêngav û jêrzemîna danîna dewletê berdewam dikin. Herî dawî 201 serbazên jin ê Pêşmerge piştî perwerdeya xwe qedandin dest bi erka xwe kirin. Fermandarên jin ê li Akademiya Leşkerî ya Zaxoyê dewreyên xwe bi dawî kirin bi rêwresmeke taybet ji akademiyê derçûn.

**Barzanî: Keçên me nîşan dan ku li Kurdistanê keç û xort ne cuda ne**

Di rêwresmê de Serfermandeyê Giştî yê Artêşa Kurdistanê Mesûd Barzanî jî gotarek pêşkêş kir û balkişand li ser qurbanîdan û azayetiya Pêşmerge û ragihand: “Navê Pêşmerge cihê şanaziyê ye li seranserê cîhanê û cîhan jî şanaziyê bi keç û kurên Pêşmerge dike. Barzanî pîrozbahî li fermandarên jin kir û got: “Hêviya min pir bi we heye ku hûnê valahiyek mezin tujî bikin û li kêleka birayên xwe lehengiyan tomar bikin û dersa xebat û berxwedanê nîşanî hemû cîhanê bidin. Serokê RHK’ê Mesûd Barzanî spasiya mamosta û rayedarên Akademiya Leşkerî ya Zaxo jî kir û diyar kir ku akademiyê gelek xizmeta Kurdistanê kiriye û wiha got: “Bajarê Zaxo ku hêlîna şoreş û şoreşgeran e, hêjayî her xizmetekê ye. Dema me biryar da vê akademiya leşkerî ava bikin, me Zaxo hilbijart. Ev jî biryarek di cih de bû.”

Barzanî di şerê DAIŞ’ê de behsa rola jinên Pêşmergeyên jî kir û daxuyand ku, tu ferqek di navbera Pêşmergeyên jin û mêr de nîne û got: “Hûn şopdar û berdewama wê rêbazê ne ku bav û bapîrên we bi nanê hişk ê cemkê de û bi çifteyan dest bi xebat û şoreşê kirine. Îro hebûna we ya li vê derê de jî berhemê xebata wan û ya şehîdên me ye. Dema welatê me dikeve ber êrîşa dijmin û terorîstan hingî kur û keç, pîr û ciwanên Kurdistanê amadene cane xwe feda bikin bo şeref û kerameta gelê xwe. Keçên kurd li gel Pêşmergeyên mêr berevaniya Kurdistanê kir û li hember rêxistına tundrew a terorîstî ya DAIŞ’ê şer kir. We di şer de nîşan da ku Kurdistan ji her tuştekî şirîntîr û bi nirxtir e. Navê Pêşmerge di cîhanê de bûye cihê serbilindiya kurdan û cîhan jî şanaziyê bi kur û keçên Pêşmerge dike. "

**“Em di bin sîbera Ala Kurdistanê dene”**

Mesûd Barzanî behsa girîngiya derçûna vê xulê jî kir û got: "Hûn di vê xula perwerdeyê de gelek mandû bûn û îro we berhemê vê mandûbûna xwe wergirt. Hûn ê stêrkan bixin ser milên xwe û bibin fermandar. Ev yek erkek û emanetek giran e û dikeve ser milê we. Divê ev erk ji bo xizmet û parastina Kurdistanê bê bikaranîn. Wateya vê erkê giran jî ev e. Me divê em nîşa tevahî cîhanê bidin ku kur û keçên me amade ne bo fedakariyê û cûdahî di nava keç û kuran de nîne. We deriyek mezin vekir. We dîwarek bilind şikand. Ez hêvîdar im ku keçên din jî weke we bên û xwebexş beşdarê we bibin. Derî ji bo wan jî vekiriye. Em hêvîdar in ku herwekî zilaman di artêşa Kurdistanê de jin jî bibin xwedan erk. Bêguman we gelek erk girte ser milê xwe. Di şeran de keçên me jî şehîd bûn. Me divê beşdarbûna jinan bi sîstematîk be û ew jî bikarin çeka zanistiyê hilgirin."

Barzanî balkişand ser girîngiya rojê û got: “Îro 69 sal bi ser şehîdbûna pêşewa Qazî Mihemed re derbas dibe. Em îro dibêjin; ew alaya ku te radestî Barzanî kir em îro di bin sîbera wê de serbilind in.”

Di rêwresmê de Barzanî xelat pêşkeşê fermandarên jin ên yekem û duyem û sêyema vê xulê jî kir û ew pîroz kirin.

**Akademiya fermandaran**

Di demekê de ku Herêma Kurdistanê li dijî rêxistina DAIŞ’ê di şer de ye, xula 21’em a Akademiya Leşkerî ya Zaxoyê, taybet ji bo jinên fermandar hate terxankirin. Hêjayê gotinê ye ku Akademiya Leşkerî ya Zaxoyê di sala 1996’ê de hatiye damezrandin û her sal xulek tê lidarxistin. Heta niha 21 xulên perwerdeyê birêve çûne û di her xulê de 200 heta 300 fermandar amade dibin. Herwiha heta niha 6 hezar û 197 fermandar pêgehandine û van fermandaran di nava yekîneyên Hêzên Pêşmerge û Artêşa Iraqê de erk û berpirsiyarî girtine. Fermandarên ku beşdarê van xulan dibin wane û teoriyan li ser taktîkên şer, zanista leşkerî, çekên nû yên pêşkeftî û nîzama artêşê dibînin.







# Îran dîrok û çanda kurdan talan dike

Mîr Botanî



Li Rojhilatê Kurdistanê pêkanîn û kiryarên rejîma Îranê dîrok û çanda kurdan talan dike û jîngehê têk dibe. Piştî ku Gola Ûrmiyê ziwa bû ku ev weke encameke polîtîkayên rejîma Îranê pêk hat, vê carê jî li Îlamê li ser robarê Kengîr bendaveke din hat çêkirin ku bi çêkirina vê bendavê bajarê antîk Zerne di bin avê de ma.

Li şûnwarên dîrokî yê Îlama Rojhilatê Kurdistanê bendav tên çêkirin. Her wiha tê ragihandin ku li cihê bendav hatiye çêkirin li derdora 200 berhemên dîrokî hebûn û hemû di bin avê de man û ji holê hatin rakirin. Rojnameger Sohrab Karimi û Jamal R. Ektihar ku ji Rojhilatê Kurdistanê ne û geşedanên li herêmê ji nêz ve dişopînin, li ser polîtîka û pêkanînên rejîma Îranê yên li dijî Rojhilatê Kurdistanê ji BasNûçe’yê re axivîn û eşkere kirin ku rejîm bi van pêkanînan dîrok û çanda kurdan ji holê radike.

**‘Binerd û sererdê Kurdistanê hat talankirin’**

Rojnameger Sohrab Karimi ji rojnameya me re diyar kir ku rejîma Îranê bi çêkîrîna bendavan du tiştan armanc dike û wiha axivî: “Rejîma Îranê dixwaze pêşiya ava ku diçe Başûrê Kurdistanê bigire û bi vê yekê zextan li Başûr bike. Ya din jî li cihên farsnişîn av tune ye û Rojhilat jî têr av e. Îran dixwaze avê ji bo herêmên farsnişîn bibe.” Karîmî got ku Îran dixwaze bi van bendavan hem berjewendiyên xwe dabîn bike û hem jî zextan çêbike li ser Herêma Kurdistanê.

Sohrab Karîmî di berdewamiya axaftina xwe de eşkere kir ku berhemên dîrokî û dîroka herêmê ji bo Komara İslamî ya Îranê ne girîng in û got, “Îran dixwaze dîroka herêmê ji holê rake. Ji bo Komara Îslamî ev behrem ne binirx in. Li Kurdistanê lêkolîneke dîrokî qet nehatiye kirin û ji bo wan jî ne girîng e ku dîroka Kurdistanê bê naskirin. Ew bi xwe dizanin ku Kurdistan gelek kevn e û dîrokî ye.”

Karîmî destnîşan kir ku tirkan, ereban û farisan ji xwe re dîrokek çêkirin e û axaftina xwe wiha domand: “Em dizanin ku Kurdistan û kurd ji wan kevntir in. Em dîbinin ku di serdema Komarê Îranê de bi qaçaxî li hemû Kurdistanê lêkolîn hatin kirin û kurên Rafsancanî jî yek ji van bû. Bê qanûnî ev dihat kirin û bi alîkariya polîsan ev kirin.” Karîmî diyar kir ku li her derê Rojhilatê Kurdistanê bi qaçaxî lêkolîn hatine kirin û ragihand ku ji aliyê rejîma Îranê ve peyker hatin dizîn û mezarên kevn hatin kolandin û her tişt hat derxistin. Karîmî bertek nîşanî helwesta Îranê da û wiha axivî: “Li Kurdistanê cihek nemaye ku lêkolîneke bi qaçaxî lê nehatibe kirin. Peyker dizîn mezarên kevn kolandin û hemû derxistin tiştek ne hiştin. Çand û dîroka Kurdistanê qîmet nabîne. Binerd û sererdê Kurdistanê hat talan kirin.”

**‘Bi çavê xenîmetê li Kurdistanê dinêrin’**

Rojnameger Karîmî got ku devera Rojhilatê Kurdistanê cihê herî dewlemend bû û bi fişar û polîtîkayan re Rojhilatê Kurdistan tûşî xizaniyê bûye û rewşa xelkê ya darayî gelekî xirab e. Karîmî wiha berdewam kir: “ Rojhilatê Kurdistan niha cihê herî paşde mayî û xizan e. Çar parêzgehên Kurdistanê; Îlam, Kirmanşan, Kurdistan û Azarbaycana Rojava yê piştî Belûcîstan û Sîstanê cihên herî feqîr in. belûc jî weke kurdan e û ew jî bindest in lê herêma wan çolahî ye û weke Kurdistanê çiya û av nîn e.Ji ber wê yekê diviyabû Rojhilatê Kurdistanê gelek pêşketîtir bûya, lê bizanebûn Rojhilat paşde xistin û devera herî xizan e.” Karîmî ragihand ku vîna kurdan nayê naskirin û wiha axivî û wiha berdewam kir:“ Rojhilat jî cudahiyeke wê heye ji cihên din û ev xwezayî ye. Ji ber ku cudahî heye û çand û siyaseta wê jî cuda ye. Dilê wan ji bo Kurdistanê naşewite. Dilê wan bi Îlam, Kirmanşan û Mahabadê naşewite.”

Sohrab Karîmî li ser ziwakirina Gola Urmiyê jî got ku li wê derê giya şîn nabe û axaftina xwe wiha domand: “Li Urmiyê sedem ne tenê bendav bû. Gelek bîr jî li ser wê herêmê hatin çêkirin û av ziwa kirin. Ava şêrîn kişandin bi pompeyan û vê gavê erd şor bû û av hemû diçe jêr erdî û namîne li ser erdê. Ava şêrîn xilas bû. Li vî erdê giya şîn nabe û zirareke mezin daye hawirdora xwe.”

**‘Bernameyeke bo avakirina Kurdistanê tune ye’**

Karîmî ji bo vegerandina golê bo ser rewşa xwe ya berê diyar kir ku rejîma Îranê çênake û eşkere kir ku bendavên tên çêkirin ne ji bo aborî û pêşketina herêmê ne. Karîmî axaftina xwe wiha bi dawî kir: “Goleke mezin mîna Gola Urmiyê, şortirîn Gola cîhanê ye ev pereyek gelek zehf dixaweze û Îran jî çênake. Gelê Îranê jî xizan e. Bendavên tên çêkirin ne ji bo aboriya herêmê ne. Armancên siyasî ne weke Tirkiyê di ava Feradê de zext li ser Sûriyê dikir. Îran jî dixwaze bi vê yekê zextan li Başûrê Kurdistanê bike. Dixwazin ji vê yekê îstîfade bikin. Her tim dibêjin bernameyên me ji bo pêşdebirina Kurdistanê ye, lê heta niha jî rewşa Kurdistanê pir xerab e. Partiya kurdan şer sekinandin lê dîsa tiştek nekirin ji ber ku Kurdistan kolanyalîzm e.”

**‘Rejîm li ser kavilkirina herêmê hebûna xwe saz dike’**

Rojnameger Jamal R. Ektihar jî ji BasNûçeyê re axivî û got ku projeyên rejîmê ne ji bo berjewendiyên gel in û hemû warên jiyanê tên jinavbirin. Ektihar diyar kir ku li Belûcîstan û parêzgehên din jî heman polîtîka birêve diçe û wiha û axivî: “ Dewletên dagirker hemû xwedî heman polîkayê ne. Tenê di bicihanînê de cudahî heye.”

Ektihar di berdewamiya axaftina xwe de got, “Rejîma Îranê dixwaze dîroka xelk û pêkhateyên herêmê jinav bibe. Arkeolojiya kurdan ji holê radike û dîroka aliyên bindest înkar dike. Hem berhemên dîrokî û çanda kurdan jinav dibe û li aliyekê jî dîroka xwe ya ‘çêkirî’ li herêmê bicih dike. Îran her çiqas proje û polîtîkayên xwe dibin navê geşepêdanê de pêk bîne jî armanc tunekirina dîrokê ye. Ji xwe dîrok û çanda kurdan li ber çav nayê girtin.”

Ektihar her wiha ragihand ku rejîma Îranê polîtîkayeke dijminahî li hember kurdan û netewên din dimeşîne. Planên xwe di bin navê geşepêdanê de pêk tîne û wiha pêde çû: “Di van salên dawîn de ev projeyên ku dîroka herêmê tune dikin zêde bûn. Hikûmeta Îranê hikûmeteke polîsiye ye.”

**‘Staratejî li ser tunekirina herêmê hatiye avakirin’**

Ektihar eşkere kir ku rejîm proje û planên xwe bi destê Spayên Pasdaran bi rêve dibe û aboriya van projeyan digihije spayê pasdaran û bi wê aboriya ku ji projeyên herêmê hatine çêkirin û herêmê wêran dikin, çekan dikirin û wan çekan li dijî xelkê herêmê bikar tînin. Ektihar axaftina xwe wiha domand: “ Hemû robarên ku digihjin Kurdistanê ziwa dikin û têk dibin. Staratejiya wan li ser tunekirina herêmê hatiye avakirin.”

Rojnameger Ektihar got ku polîtîkayên li Rojhilatê Kurdistanê tên birêve birin bandora xwe ya neyînî li ser hemû aliyên jiyanê dike û eşkere kir ku ne tenê li ser Rojhilat li ser Herêma Kurdistanê jî bandoreke neyînî dike.”

**‘Karesata jîngehê çêdibe’**

Rojnameger Jamal R. Ektihar di derbarê hişkirina Gola Ûrmiyê de jî axivî û got ku gol di encama polîtîkayên rejîmê de hişk bû û wiha pê de çû: “20 bendav li ser robarên ku çavkaniyên Gola Ûrmiyê ne hatin çêkirin û di encamê de jî gol hat hişkkirin. Pêşiya wan robaran hate girtin. Daxwaz ji dewletê tê kirin ku dawî li van projeya bê anîn û hewl bide ku gol bê rewşa xwe ya berê, lê belê rejîma Îranê goh nade van daxwazan û li ser polîtîkayên xwe bi rijd e. Hişkahiya golê li derdorê belav dibe. Di encama van polîtîkayan de karesata jîngehê çêdibe.”

Ektihar ragihand ku Komara Îslamî ji destpêka damezrandina xwe heta roja îro bê navber van pêkanînan li dijî herêmê bi rêve dibe û wiha dawî li axaftina xwe anî: “Li Îranê opozîsyon ne xurt e û qels e ku li hember van polîtîkayan raweste. Platformek jî tune ye ku dengê xwe bilind bike. Polîtîkayên wan niha jî bi heman awayî berdewam dikin. Berdewama pergala Îranê di esas de li ser wan projeyan e. Ji xwe proje serbazî ne. Herêmê kavil dike û bi vê yekê hebûna xwe jî saz dike.

# Sûr bi lezgînî hat îstîmlaqkirin

Murat Özdemir



Li navçeya Sûrê ya Amedê di 2'ê Berfanbarê de bi ragehandina ,xweseriya demokratîk' û ko-lana hendek û danîna sengeran ve qedexeya derketina kolanan hatibû ragihandin û bi li vê navçeya dîrokî şer û operasyon destpêkirin. Di maweyê operasyonan de ku li navçeyê heta 9'ê Adarê berdevam kir, pevçûnên dijwar rû dan û bi dehan kesan jiyana xwe ji dest dan, herwiha di vê maweyê de, avahiyên dîrokî û bi sedan xanî xerabûn û zirareke mezin dîtin. Bi taybetî çendîn taxên navçeyê kavil bûn.

Navçeya ku bi mehan di bin dorpêçê de ma niha jî bi biryara îstîmlakkirinê rûberû ye. Rayedarên hikûmetê radighînin ku biryara 'îstîmlaqkirina lezgîn' ji bo ku navçe bi awayekî bilez li gor mîmariya xwe ji nû ve bê avakirin hatiye hildan. Lê belê rêxistinên sivîl yên Ame-dê dibêjin ev pîlana ku ji bo Sûrê hatiye danîn 'dagirkirina navçeyê û tunekirina dîrokê' ye.

Serokê Odeya Avahîsazan ya Şaxa Amedê Şerefhan Aydın, Şaredarê berê yê Sûrê Abdullah Demirbaş û Serokê Şaxa ÎHD'ê ya Amedê Raci Bilici li ser rewşa Sûrê û biryara îstîmlaqkirina navçeyê ji BasNûçe'yê re axivîn.

**Şerefhan Aydın: Ev biryar qirkirina çand û dîrokê ye**

Serokê Odeya Avahîsazan yê Şaxa Amedê Şerefhan Aydın ji BasNûçe'yê re axivî û got ku ew vê biryarê weke destdanîna ser navçeyê binav dikin. Aydın ragihand ku tu bingeha hiqûqî ya vê biryarê jî tune ye. Aydın got ev tiştên ku niha rû didin hemû encamên plansaziyekê ne: "Ev biryar di encama planekê pêk tê. Sûr ji 15 taxan pêk tê û şer û qedexe herî zêde li 6 taxan qewîmin. Lê belê tevî îstîmlaqkirinên berê, niha ji sedî 96'ê Sûrê hatiye îstîmlaqkirin û destdanîne ser. Ev plan nîşanî me dide û wisa xuya dike ku ev yek beriya niha hatiye plankirin." Şerefhan Aydın di berdewama axaftina xwe de destnîşan kir ku bi vê biryarê re destdanîn a ser avahiyên bazirganiyê jî û avahiyên li navçeyê gelek kêm di bin nirxê xwe de tên firotin, lê bihayê wan avahiyên li navçeyê gelek zêde ye.

Şerefhan Aydın ragihand ku biryara îstîmlaqkirina Sûrê bi planên beriya niha yên hikûmetê eşkere kirî ve girêdayî ye û got, "Beriya niha digotin Toledo, lê belê Toledê piştî şerê navxweyî bû xwedî statu û xweser. Sûr jî weke Toledoyê cihekî dîrokî ye, lê niha li Sûrê dest danîne ser avahiyê şaredariyê jî. Niha kî wê Sûrê birêvebibe?" Aydın diyar kir ku niha jî têketin û derketina Sûrê qedexe ye û wiha axivî: "Gotin operasyon qediyan, lê çima destûr nadin gel bikeve navçeyê? Di hindûrê Sûrê dê kes nizane ka çi tê kirin. Lewma ev jî dibe cihê gûmanan."

Şerefhan Aydın diyar kir ku dîrok, çand û jîngeha herêmê tê têkbirin. Aydın da zanîn ku beri-ya niha jî di bin navê vegûherandina bajêr de li taxên Alipaşa, Lalebey mirov ji cih û xaniyên xwe hatin kirin û got, "Lê ew kesên ku di xwaniyên TOKİ'yê de hatibûn bicihkirin, dîsa hemû vegeriyan cihên weke Bağlar û Sûrê. Ji xwe gelê Sûrê ji aliyê aboriyê ve qels e, mirovên xizan in yên li wir dijîn."

**"Sûr navçeyeke ne ji rêzê ye"**

Aydın li ser berhem û avahiyên dîrokî yên li Sûrê jî ku di encama şer de taxrîp bûn de jî diyar kir ku dîroka herêmê ji şer û pevçûnan pir zirar dîtiye û wan jî pêşniyar kiriye ku bi planeke nûjenkirinê navçe dîsa bê ser rewşa xwe ya berê. Aydın got ku lê belê ev pêşniyara wan nehate qebûlkirin û axaftina xwe wiha domand: "Navçeyê zirareke mezin dîtiye. Em dikarin bibêjin ku ev qirkirina çand û dîrokê ye. Tu hesasiyet li ber çav nayên girtin û ew avahiyên ku ji pevçûnan xesar dîtin, ji nû ve tên taxrîpkirin. Bi makîneyên kar ew parçeyên ku ji wan avahiyan hatine veqetandin û xirakirin, tên avêtin. Dîvê di bin çavdêriya pisporan de xebat bê meşandin, lê ne bi makîneyên kar û bi hesasiyet xebat bê kirin. Sûr navçeyeke dîrokî ye û ne ji rêzê ye. Divê xebata li wir bi awayekî bi kontrol bê kirin."

Şerefhan Aydın diyar kir ku ew ê serî li dozgeriyê bidin li hember van pêkanînan û wiha dawî li axaftina xwe anî: "Li Sûrê ew parçeyên ku ji avahiyan ketine jî pir bi nirx in, bi hezaran sa-lan dîroka wan heye, lê tên avêtin. Ev tunekirina dîrokê ye. Me dixwest bi kontrol û bi nûkiri-na navçeyê û avahiyên dîrokî planek bê danîn û meşandin. Li Sûrê jîngeh tê jinavbirin. Em ê hewldanên xwe yên li hember van polîtîkayan bidomînin."

**Demirbaş: Divê bi gel re planekî çalakiyê bê çêkirin**

Serokê Şaredariya Sûrê yê berê Abdullah Demirbaş jî li ser biryara îstîmlaqkirina Sûrê ji ro-jnameya me re axivî û got ku Sûr dilê Amedê ye û tişta ku niha tê kirin jî bi bidestxistina Amedê rûxandina wê ye. Demirbaş got, "Divê bi gelê wir, saziyên sivîl ên civakî û rêve-beriyên herêmî re planekî çalakiyê bê çêkirin. Bi 'îstîmlaqkirina lezgîn' mizgeft, dibistan û cihên taybet yên malbatan jî hatin îstîmlaqkirin. Ev jî bi awayekî lez tê kirin û nîşan dide ku hikûmet çiqas şaş e. Çi hewceyî bi vê lezê heye." Demirbaş destnîşan kir ku tu eleqeya van pêkanînan bi hiqûqê jî tune ye û got ku hikûmet wê Sûrê ji endezyarên nêzikî xwe re pêşkêş bike.

**Bilici: Ev dagirkirina Sûrê ye**

Serokê Şaxa ÎHD ya Amedê Raci Bilici ji BasNûçe'yê re axivî û ragihand ku biryara îsqtîmlaqkirina Sûrê derveyî hiqûqê ye. Bilici amaje bi wê yekê kir ku hin tiştan weke for-malîte dispêrin yasayan û got 'ev pêkanîn li derveyî yasayan e.' Bilici axaftina xwe wiha do-mand: "Navçeyak hemû hatiye îstîmlaqkirin. Ya lazim ne ev e. Li gor me ev dagirkirin e." Bilici eşkere kir ku 'îstîmlaqkirina lezgîn' a Sûrê dewama plana ku Serokwezîrê Tirkiyê Ah-met Davutoğlu li Zankoya Artuklu ya Mêrdînê ragihandibû ye û wiha axivî, "Dixwazin kur-dan ji cih û warên wan bikin. Armanceke din jî ew e ku demografiya heremê biguherînin û hiş û dîroka gel jêbibin. Ji kîjan alî lê binêrin ev yek karesat e. Em hemû pêkhatehên bajêr civînan dikin û biryaran didin. Têkoşîna me wê bidome."



Li navçeya Sûrê ya Amedê piştî qedexe û operasyonên ku bi mehan berdewamkirin, biryara 'îstîmlaqkirina lezgîn' hat dayîn. Li 16 taxên Sûrê, 2 taxên Yenişehirê û bi giştî 18 tax û 6 hezar û 642 parsel hatin îstîmlaqkirin. Navçeya Sûrê ya Amedê ji aliyê dîrok, çand, bawerî û bazirganiyê ve cihekî xwe yê taybet heye û di bin parêzvaniya UNESCO'yê de ye. Navçeya dîrokî ku di encama şer û pevçûnan de kavil bû, bi awayekî 'lezgîn' hate îstîmlaqkirin.

Raci Bilici di berdewamiya axaftina xwe de ragihand ku hikûmet ev demeke dirêj e amadekariyên îstîmlaqkirina Sûrê didomîne û got, "Ji avahiya Şaredariyê bigire heta banka navendî, hemû tiştên li navçeyê tên îstîmlaqkirin. Gel pir hêrs bûye û li hember vê biryarê matmayî maye. Niha maseya krîzê tên avakirin. Daxwazên mirovan yên bi vî awayî hene. Li vir aşitiya civakî bi dawî dibe. Pêdiviya vî welatî bi aşitî û aramiyê heye."

**Ahmet Davutoğlu: Sûrên Amedê wê bên parastin**

Serokwezîrê Tirkiyê Ahmet Davutoğlu jî piştî biryara îstîmlaqkirina çû Sûra Amedê û li ser rewş û biryara 'îstîmlaqkirina lezgîn' axaftinek pêşkêş kir.

Davutoğlu di derbarê ji nûhve avakirina Sûrê de jî got ku mîrata dîrokî wê bê parastin û wê li gor mîmariya Amedê ji nû ve bê avakirin. Davutoğlu wiha axivî: "Sûrên Amedê wê di çar-çoveya Mîrata Çandî ya UNESCO'yê de bên parastin. Em ê Baxçeyên Hevselê hem biparêzin û Sûrê li gor dîroka wê ji nûh ve ava bikin. Em ê her tiştî bi gel re biaxivin û bi gel re çêbikin. Tu kes nayê mexdûrkirin. Kargehên Amedê yên ku hatin girtin dê dîsa bên vekirin, aboriya Amedê ya ku rawestiya ye dê ji nûh ve geş bibe. Tevî Hesen Paşayê em ê Mizgefta Mezin û derdora wê wek ciyê ku gelê Diyarbekirê lê dicive wek navenda tûrîzma baweriyê biparêzin."

Li aliyê din li Amedê 310 saziyên sivîl ên civakî li dijî biryara "Îstimlaqkirina lezgîn" "Plat-forma Jiyandin û Parastina Sûrîçî" ava kirin.



# Naxweşxane û dibistan dibin qereqol!

Ercan Ekinci




Li navçeya Bağlara Amedê navendên tenduristiyê, dibistan û wargeha girêdayî Saziya Hêvişandina Zarokan û Xizmetên Civakî (SHÇEK) ji bo ku li cihê wan qereqol bên avakirin, tên hilweşandin. Wargeha ku 3 meh berê ji aliyê Wezareta Polîtîkayên Malbatî û Civakî ve ji bo "Projeya Malên Sevgiyê" hat valakirin bi biryareke lezgînî ji bo veguhrandina qereqolê dest bi hilweşandina wê hatkirin. Çêkirina qereqolên nû û pêkanînên li herêmê ne tenê dibin xerakirina navendên tenduristiyê û dibistanan, guman li ser jiyana xelkê li herêmê jî dike. Li taxa Ben û Senê vinca ku di înşaeta qereqolê de dixebitî, diwarê Dibistana Seretayî ya Turgut Ozalê xera kir û Furkan Öner (6) û Ayaz Özdemir (6) di bin diwarê dibistanê de man û herdu zarokan koça dawiyê kir. Li gelek tax û kolanên bajêr qereqol tên avakirin.

Li ser hilweşandina navendên tenduristiyê, saziyên perwerdehiyê ku dê li şuna wan navendên ewlekariyê werin çêkirin û bicihkirina tîmên taybet di dibistanan de û polîtîkayên dawîn ên li herêmê tên bi rêvebirin Serokê Odeya Bijîşkan ya Amedê Cengiz Günay, Serokê Şaxa ÎHD'ê ya Amedê Raci Bilici û Hevserokê Eğitim-Senê ya Şaxa yekem yê Amedê İkram Atabay ji BasNûçe'yê re diyar kirin ku bi çêkirina qereqolan pirsgirêk çareser nabin û divê dev ji van polîtîkayan bê berdan.

**Günay: Xelkê navçeyê tê maxdurkirin**

Serokê Odeya Bijîşkan a Amedê Cengiz Günay di derbarê hilweşndina navendên tenduristiyê û dibistana ku dê li şuna wan navendên ewlekariyê werin avakirin ji BasNûçe'yê re axivî û got ku li navenda tenduristiyê ya Bağlarê nêzî 60 hezar kesî xizmet distandin. Günay diyar kir ku navenda tenduristiyê ya Bağlarê ji sala 1963'an heta niha xizmetê dide û di hişê şêniyên li herêmê de cih girtiye û wiha axivî: "Bi kesên ku ji Sûr û Sûriyê hatin ve gelheya navçeyê gelek zêde bû 60 hezar kesî li wê navendê xizmet distand. Em li bendê bûn ku navendên tenduristiyê yên li navçeyê bên zêdekirin, lê belê wan, navendên heyî jî xera kirin û bîjîşkên li navçeyê jî şandin. Li cihê wê navendê destbi çêkirina qereqolê dikin. Li Bağlarê cihekî din yê ku navendeke tenduristiyê bê çêkirin jî tune ye û gelê li navçeyê wê bê mexdûrkirin."

Günay di berdewamiya axaftina xwe de da zanîn ku divê navendên tenduristiye werin parastin û got, "Me ji Wezareta Tenduristiyê jî xwest ku divê ji bo xizmeta gel divê navendên tenduristiyê bên parastin. Eger zêde bixwazin qereqolan çêbikin, cihên lê qereqolan çêbikin zehf in lê diçin sziyên ku xizmetê didin gel hildiweşînin."

Günay di dawiya axaftina xwe de destnîşan kir ku li taxa Sûr'ê jî navenda tenduristiyê ya ku li kolana Melik Ahmedê ye jî dema ku derketina kolanan qedexe bû hat talankirin û got, "malzemeyên hevalên me yê ku li navendê xebatên tenduristiyê dikirin hatin dizîn. Piştre jî hat valakirin û hêzên ewlehiyê ketin wê derê. Paşê hêzên ewlekariyê ji wir derketin lê belê ji ber ku hatibû talankirin, xebatên tenduristiyê nehatine meşandin. Paşê jî nivîsa wezaretê gihişt destê me ku wê ew navend jî bibe qereqol. Ev polîtîka şaş in û gel tê mexdûrkirin."

**'Bi hişmendiya ewlehiyê pirsgirek çareser nabin'**

Serokê Şaxa ÎHD'ê ya Amedê Raci Bilici,li ser hilweşandina navêndên tenduristiyê û dibistanên ku dibin qerekol de axivî û got, "Ev rewş nişan dide ku dewletê hê jî hişmendîa xwe ya berê didomîne. Ji bona tevahiya pirsgirêkan, bi polîtikayên ewlehiyê nêzîkatî, înkar, redkirin, qedexekirin, çêkirina operasyona, bi tevahî bajaran xerakirin ne polîtîkayên îro ne ew polîtîkayên ku ji berê de didomin berdewama wan e." Bilici eşkere kir ku di salên 90'î de bi hezaran gund hatin şewitandin, bi hezaran mirov ji ji welatê xwe bûn, bi hezaran mirovan di wî şerê de jiyana xwe ji dest dan û axaftina xwe wiha domand: "Çavkaniyên mirovan û çavkaniyên aboriyê yên welat hatin heba kirin. Tenê bi polîtîkayên ewlehiyê girtin dest û gotin em ê biqedînin,tune bikin. Ew feraset hê jî didome. Ji avakirina komarê heta niha guhertinek di hişmendiya wan de pêk nehatiye."

Li Bakûrê Kurdistanê tevî qedexe, şer, operasyon û wêrankirina dîrok û çandê vê carê jî polîtîkaya çêkirina qereqolan ketiye meriyetê ku avahiyên tenduristiyê û perwerdeyê jî ji bo ku bikin qereqol tên xerakirin û li Amedê û bajarên din yên ku di bin şer û qedexeyan de bêzar bûn, bi çêkirina qereqolên nû tên fetisandin.

**'Polîtîkayên ewlekariyê çareserî nayne'**

Bilici ragihand ku li serê her taxan, kolanan û cihê ku vala dîbînin qereqolan çêdikin û wiha axivî: "Navendên tenduristiyê, wargehên zarokan xeradikin qerekolan çê dikin, heger wisa bidomê wê tevahiya dibistana an xera bikin an ji bikin qerekol. Wê saziyên dewletê bi tevahî bikin qerekolên leşker û polîsan, lê ew jî têrî nake. Eger nêzikatiya wan bi polîtîkayên ewlehiyê bin û her kesî neyarek potansiyel bibînin, kurdan wek neyar bibînin û wisa polîtîkayên xwe pêş bixin ku ji her kurdî re leşkerek jî bidin dîsa nayê çareserkirin. Bi polîtîkayên ewlekariyê çareserî pêk nayê."

Bilici got ku hê jî di rê û rêbazên xwe yên şaş de bi rijd in û ku ewlehiya gelan ne bi çêkirina qereqolan, bi demokratîkbûyînê pêk tê û got, "Em dibînin kû wan rê û rêbazên xwe yên şaş ne gûhertine hê jî di polîtîkayên xwe de bi rijd in. Dibejin cihê ku me vala dît em ê qereqolan çê bikin û bi wan em ê evlehiya gel bistînin. Evlehiya gelan wîsa nayê stendin." Bilici bi van gotinan dawî li axaftina xwe anî: Ewlehiya gelan bi demokratîkbûyîne dibe. Bi parastin û rêz girtina mafê mirovan dibe. Bi diyalog û muzakereyan, bi rê û rêbazan demokratîk pirgirêk çareser dibin. Eger ev pêk neyên tu pêşketin û çareserî nabe. Eger ziman, ol û çandên cuda di makezagonê de bên qebûlkirin wê demê wê aşitiyeke mayînde pêk were û hewcehî bi qereqolan jî namîne."



**Atabay: Konsepta nû ewlekarî ye**

Hevserokê Eğitim-Senê ya Şaxa Yekem yê Amedê İkram Atabay jî li ser xerakirin navendên tenduristiyê û çêkirina qereqolên nû li herêmê got ku piştî hilbijartinên 7'ê Hezîranê dewletê konsetpa şer da destpêkirin û wiha axivî: "Ji ber wê yekê jî hemû saziyên xwe li gor vê konsepta şer saz dike. Ev bi meha ne em hişyariyan didin ku divê navendên tenduristiyê û perwerdehiyê nebin navendên ewlekariyê. Lê hikûmetê jî di vî warî de gav ne avêtiye û niha li Amedê û gelek cihan hem li saziyên tenduristiyê û hem jî li yên perwerdehiyê bi şev leşker û tîmên taybet tê de bicih dibin.

Atabay di berdewamiya axaftinên xwe de got ku herî dawî li Dibistana Seretayî ya Turgut Özalê ku li Yenişehirê ye û bi şev leşker tê de bicih dibin, tîmên taybet ji bo ewlehiya xwe bendên beton anîn. Atabay axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Ew bendên beton li ser du zarokan de wergeriya û du xwendekarên biçûk jiyana xwe ji dest dan."

# Penaberên Sûriyê wê bibin çeka demografîk?

Can Dirmo

Penaberên ku ji Suriyê xwe sipartine Tirkiyeyê niha jî dibin mijara çendîn nîqaşên din. Yek ji nîqaşên ku navê penaberan tê hildan, bikaranîna wan ya ji bo guherîna demografya ya heremê ye. Tê angaştkirin ku wê penaber li bajarên kurdnîşîn ji bo guherîna demografyayê bên bikaranîn.

Qeyrana penaberan ku ji ber şerê navxweyî yê Sûriyê rû da, cihê xwe yê di rêza yekem yê rojeva cîhanê de digire. Dirêjbûn û tevlûhevbûna şer û qeyrana Sûriyê, hêviyên çareseriyê paş dixe û lêgerînên ji bo çareserkirina qeyrana penaberan didomin. Piştî rêkeftina ku di navbera Tirkiyê û Ewropayê li ser meseleya penaberan de li navenda Ewropayê Brukselê pêk hat, bal li ser Tirkiyê ye. Hewldanên Tirkiyê jî yên ji bo çareserkirina vê meselê û çêkirina kamp û wargehên nû ji bo penaberan dibe sedema niqaşan. Avakirina kamp û cihên nû ji bo penaberan ji hêla gelek aliyan ve weke, "Polîtîkayeke xeter ku binyada çandî ya herêmê xera dike û demografiya herêmê digûherîne" hate nirxandin.

Cîgirê Serokê Giştî yê CHP Veli Ağbaba, li ser kampa ku tê plankirin li Mereşê bê çêkirin ji Serokwezîrê Tirkiyê Ahmet Davutoğlu re nameyek şand. Ağbaba di nameya xwe de fikara xwe ya ku çêkirina kampa ku wê erebên Sûriyê tê de bêne bicihkirin, wê bibe sedema 'bûyerên Mereşê' yên nû, anîbû ziman. Ağbaba di nameya xwe de angaştkiribû ku elewiyên li navneda bajêr bi koçkirine û bajar terikandine.



## Li Mereşê çi diqewime?

Li Mereşê avakirina bajarê konteynêr ku wê konbajarê li taxa Sivrice Höyük ku 18 hezar û 500 Sûriyeyî lê dîminin, wê ji bo bê vegûhastin, destpê kir û têketin û derketina herêmê hat girtin. Li bajêr beriya 4 salan li ser zeviya Küçük Sanayi Sitesi ji bo kesên ku ji Sûriyê redivin konbajareke hatibû avakirin. Niha jî biryare ku ev konbajar ji bo taxa Sivrice Höyük ku ji navenda bajêr 20 kîlometran dûr e, bê vegûhastin. Şêniyên 6 gundên elewiyan û 2 jî yên sunniyan ku li wê devera ku biryare konbajar lê bê avakirin, dixwazin kamp li devereke din bê çêkirin. Bi pêşengiya Platforma Jiyandinên ya Mereşê ya li taxa Terolera navçeya Dulkadira Mereşê ye û welatiyên elewî lê dijîn, li dij çêkirina konbajarê Sûriyeyiya çalakiya nobedê lidar dixin.

## ÎHD: Divê rêveberî hassasiyetê nîşan bide

Serokê Şaxa ÎHD'yê ya Mereşê Selçuk Delibaş ku krîza çêkirina kampên nu li herêmên welatiyên elewî dişopîne ji BasNûçe'yê re axivî û diyar kir ku gelê li herêmê çêkirin van kapman li herêmên xwe naxwaze. Delibaş eşkere kir ku ew bi rêvebriyên herêmî û parêzgeriyê re di nava têkiliyan de ne û axaftina xwe wiha domand: "Vî gelî, komkujî dît, DAIŞ dît û niha şêniyên li herêmê din ava fikaran de ne. Mirov vê yekê weke ji hev cudabûneke mezhebî dibînin. Xelkê li vir bi wî çavî li yên tên dinêre û wisa dibînin." Delibaş got ku divê rêveberî hesasiyet nîşan bide û got ku pêvajoya hiqûqî wê bê destpêkirin. Delibaş diyar kir ku qasî ji destê wan hatî têdikoşin û got, "Gel vir naterkîne. Dibe ku biryareke derketibe. Lê ya ya esas gel e. Divê rêveberî hesasiyetê nîşan bide."

## "Ev biryarên polîtîk in"

Serokê Şaxa Komeleya Pir Sultan Abdal Salman Akdeniz di derbarê çêkirina kampê de got ku dij derketina çêkirina vê kampê ne nijadperesetiye û got ku ji aliyê teknîk û erdnigariyê ve çêkirina vê kampê wê bibe sedema handîkapeke mezin. Akdeniz pirsên; ev biryareke polîtîk e a jî zafiyeteke araste kirin û axaftina xwe wiha domand: "Em hemû komên etnîkî û olî li vir bi hev re têdikoşin. Dijderketina me ne li hember mirovên tên vir e, li hember rêvebir û desthilata ku rewşa herêmê, binyada civakî, çandî – polîtîk û etnîkî li ber çav nagireye. Ji ber vê yekê em li dij derdikevin."

Akdeniz eşkere kir ku hejmara penaberên ku tê xwestin li herêmê bicih bikin ji gelheya herêmê zêdetir e û got ku parêzer û pisporên ku li ser vê mijarê dixebitin ragihandine ku plan heye ku wê li ser zeviyeke 360 donim, bajarekî konteynir yê ku 27 hezar kesan pêk tê çêbikin. Akdeniz ragihand ku eger ev plan bikeve meriyetê wê di pêşerojê de bibe sedema pişaftineke cidî û koçbûnê û axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Divê dewlet ji bo ji holê rakirina mexdiriya penaberan cihekî din destnîşan bike û hin xebatên din bike."

## "Wê bibe sedema pisgirêkên civakî û çandî"

Parlamenterê HDP'ê Dengir Mir Mehmet Fırat ku beriya niha angaştkiribû ku bi îstîmlaqkirina wê erebên Sûriyê li navçeya Sûrê ya Amedê bên bicihkirin, ji BasNûçe'yê re axivî. Fırat ragihand ku agahî tên ku wê ji Cizîrê heta Kilîsê li ser xeta sînor penaberên Sûriyê bên bicihkirin û got kul i Mereşê li gundên elewiyan çêkirina kampên penaberan wê bibe sedema pirsgirêkên mezin. Parlamenterê HDP'ê diyar kir ku bi van polîtîkayan dixwazin demografiya herêmê biguherin û wiha axivî: "ev pêkanîn wê bibe sedema arîşeyên mezin ên weke çandî, civakî û siyasî."



## "Ji Îttihat Terakkiyê heta niha ev polîtîka dewam dike"

Akademisyen Ercan Çağlayan jî li ser mijara bicihkirina penaberan û geşdanên li herêmê ji BasNûçe'yê re diyar kir li ser rûyê cîhanê ku dewlet netewî/nûjen li hin herêmên din ava sînorên xwe de ji bo ku desthilata xwe qayîm û bihêz bikin, dikevin nava hewldanên bi vî rengî. Çağlayan destnîşan kir ku dewlet ji bo ku pişta kesên ku mixalîf in bişkîne û netew û etnîka desthilat û hakîm bê domîne kirin, cihekî cuda didin polîtîkayên gelhe û etnîsîteyê. Çağlayan wiha axivî: "Di vê çarçoveyê de ji serdema Îttihat Terakkî heta niha nemaze li wê herêmê û gelemper jî li Anatolyayê polîtîkayên bi vî rengî bi awayekî berfireh hatine tetbîqkirin. Bêgûman ji van polîtîkayan yên herî berbiçav polîtîkayên îskan û koçkirinê ne. Divê mirov jibîr neke bi vê polîtîkaya koçkirinê bi awayekî senkronîze ji Kafkasan, Balkanan û Rojava û Navenda Anatolyayê gelheya tirk li herêmê tê bicihkirin. Di dîrokek nêz de li derveyî Tirkiyê, li ser rûyê cîhanê polîtîkayên bi vî awayî ango hewldn û kiryarên guhertina demografiyê gelek zêde ne. Di vê çarçoveyê de li Yekîtiya Sovyetê, Îsraîl, Sûriye û Iraqê li derveyî etnîk û olên serdest li dijî kom û gelên din polîtîkayên bi vî rengî hatin meşandin."

## "Ev polîtîka xeter e"

Çağlayan di berdewamiya axaftina xwe de got ku di serî dewê bibe sedema pevçûnên etnîkî, mezhebî, aborî û herî dawîn wê şerê xwecih-biyanî derbikeve û axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Lê di serî de min anî ziman, di demeke ku sînorên netew-dewletan hêdî hêdî ji holê radibin, sîrkulasyona civakî ewqas zêde bûye de, polîtîkayeke bi vî rengî pir şaş û xeter e. Divê em destnîşan bikin ku Hikûmet nikare şert û mercên aktuel li ber çav negire û ji derfetên heyî îstîfade neke."








# "Hûn dikarin çayekê bi me re vexwin"

Gültekin Çelik



Di civaka Kurdistanê kesên kêmendam gelek in. Li Amedê komeleyeke ji bo maf û peydakirina derfetan bo kêmendaman ditêkoşe vebû. Di komelê de xebatkarên kêmendam kardikin û kêmaniyên wan jî nasdikin. Navê Komelê; Komeleya Amedê Anatolya û Mezopotamya û Kuluba Werzîşê a Kêmendama ye. Serok, rêvebir û werzîşkerên komeleyê ji BasNûçe'yê re axivîn û komeleya xwe dan naskirin.

Serokê Komelê Mehmet Emin Güler di derbarê rastî astengiyên tên ji BasNûçe'yê re ragihand ku komeleye xwe nû vekirinin, ji niha ve dest bi xebatên hêja jî kirine û bi projeya 'Hûn dikarin çayekê bi me re vexwin' di nav civakê de guh nadin dîtinên nerehet û xebatên xwe didomînin. Li ser mijarên ku komeleyê dixebite jî serokê komeleyê Mehmet Emin Güler wiha axivî: "Ez bi xwe jî ji çavê xwe kêmendam im û ji bo yên mina min an jî yên rewşa wan ji ya min xerabtir me pedivî bi vê komeleyê re dît û me dest bi xebatên xwe kir. Xebata me ya yekem jî ew e ku em ji civata xwe re dibêjin 'Hûn dikarin çayekê bi me re vexwin' û di hemû qadên civakî de em tevlî civakê dibin, ne jiyana xwe û ne jî ya endamên komeleya xwe di hundiran de dorpêç nakin.

## Nerîna civakê

Li gorî lêkolîneran kesên kêmendam, ji aliyê civakê têne astengkirin û her wiha ji ber vê yekê jî kesên kêmendam ji bilî pirsgirêkên astengkirinê êdî tenduristiya derûniya wan jî têk diçe. Güler di derbarê astengkirina civakê de ragihand ku ew ji xwe ji aliyê laş an jî weslên xwe kêmendam in, lê dema civak jî bi çavekî din an bi dil şewatî li wan dinêre îja derûniya wan jî têk diçe û tenê di malên xwe de dijîn, tevlî civakê nabin û hemû jiyana wan ji kesên di nav malên de tenê pêk tê: "Ji ber van sedeman em wek komeleyê li ser hemû pêkhateyên civakî û çandî xebatan dikin. Ji xebatên çand, huner, werzîş û perwerdeyê bigrin heta projeyên karên civakî û projeyên navneteweyî jî çêdikin. Cihê me li gorî hejmara endamên me teng e lê dîsa jî em xebatên xwe bê navber didomînin. Ev xebatên me jî êdî ji civaka me re bi sûd vedigere. Hin endamên me bi qursên me yên perwerdehiyê bûne karmend hin werzîşkerên me li tevahiya Tirkiye yê di pêşbirkan de bûne yekemîn û her wiha hin ji xortan hin ji zarokan pêk tên û em niha di asteke baş dene. Ji bo siberojê jî projeyên me hene û bi vê xebata me yî 'Hûn dikarin çayekê bi me re vexwin' me xwest civaka me jî me nas bike û bi me bihise."

## Serkeftinên werzîşkerên kêmendam

Hemû mirov dibe werzîşê bikin ji bo tenduristiya xwe lê di raporên ji bo kêmendaman de hatiye diyarkirin ku kesên kêmendam ji bo tevlî civakê bibin û xwe li civakê de bidin qebûl kirin bi giştî bi werzîşê re eleqeder dibin û vê yekê jî ji bo ku di cavakê de û di malên xwe de bêkes, tenê an jî bê heval û hogir nemînin e. Serokê Komeleyê Güler jî li ser vê babetê amaje pê kir ku ew di pêşbirkên werzîşê de gelek bi serkeftin û her wiha ji astên zaroka jî ji astên mezin û xortan jî pileyên baş werdigrin. Mehmet Emin Güler axaftina xwe wiha domand: "Beriya hefteyekê di pêşbirka ku li tevahiya Tirkiye yê çêbibû yek ji werzîşkerên me di pêşbirkên de bibû sêyemîn û sê werzîşkerên me jî bibûn yekemîn. Hemû jî di bêşa jûdoyê ev serkeftî bi destxistin. Zarokên me yên bi serkeft Yusuf Adıgüzel, Ruken Adıgüzel û Ayşegül Özmen e. Di jiyana kêmendaman de werzîş wek tedawiya rehabîlîteyê tê zanîn û bi rastî jî her kes bi vê sedemê destpê dike, lê ev jî heye ku dema destpêdikin beşdarî pêşbirkan dibin gelek hevalên mina xwe dibînion û êdî ew armanca rehabîlîteyê tê guhertin û dibe serkeftiyên werzîşê." Her wiha ji xwe werzîş têra xwe qadeke tijî û ji bo herkesî jî pêwîst e.


M. Emin Güler

Mehmet Emin Güler wiha pê de çû û got: "Li gorî em komeleyeke nû nin jî di demek kurt de me di pêşbirkan de 6 xelat girt û ji wan 6 xelatan 3 jî yên zêr in."

## "Xebatên werzîşê wê bidomin"

Mehmet Emin Güler di derbarê siberojê û serkeftiyên xwe axaftina xwe domand û daxuyand ku werzîşa ku me ji bo rehabîlîtasyonê destpêkir êdî bi awayekî profesyonelî didomînin û wê her bidomînin jî. Mehmet Emin Güler axaftina xwe wiha berdewam kir: "Di meha pêşiya me de li Mêrsînê ew ê pêşbirk çêbibe û em hatine vexwendin û ligel derfetên kêm jî em ê bêşdarbibin." Hemû endamên komeleyê karmendin û dibêjin ku ew ji bo kesên bê derfêt dixebitin.

## Judokarên kêmendam

Werzîşkerê komeleyê Erkan Düzün jî yek ji wan karmendaye û ew jî dibeje ku jixwe ew karmend e, xwedî derfet e û di heman demê de jî kêmendame, lê ji bo kesên ku bê derfet divê hin xebatên berbiçav were kirin ku ew kes xwe ji mirovên din û ji civakê dûr nebîne. Erkan Düzün axaftina xwe wiha dom kir: "Di qada Jûdo'yê de min xwe li komeleyê pêşxist û heta niha ligel em komeleyeke nû nin jî me gelek xelat girt û ew ê bidomin jî ev xebatên me. Ez îsal beşdarî di pêşbirka ku kesên 81 kîlo giraniya wan hebû bûm û min xelat wergirt. Jixwe armanca me ne ew e ku em herin xelatekê bigrin û werin. Armanca ew e ku em êdî werzîşkerên me nunertiyê di qadan neteweyî kêmendamên komeleya xwe bikin û di heman demê de wan bigerînin û tevlî civakê bikin ku ew jî jiyanê cûda bibînin û binêrin ku ew ne tenê nin û her kes xwe di komeleyê de bibin xwedî cîh. Divê her kes werzîşê bike kêmendam an kesên astenga derdixin holê"

## "Projeyên nû di rê dene"

Revebera komeleyê û berpira projeyan Berna Akbayrak jî rave kir ku ew ji bo ku birayê wê kêmendam e ew jî beşdarî vê komaleyê bûye. Akbayrak got: "Ji ber em bi malbatî bi vê êşê zanin min xwest ku ez di vê komeleyê de cîh bigrim û tiştên ku min di mala xwe de jiyanin bi komeleyê re parve bikim û min ji bo alikariya wan dest bi çêkirina projeyan kir. Projeya me ya yekem 'Hûn dikarin çayekê bi me re vexwin' di armanca ji bo kêmendaman û komeleya me ji aliyê aboriyê û civakê sûd were bê girtin."

Akbayrak armancên vê projeyê wiha bi rêz dike û got: "Tekiliya nav civakê û kesên kêmendam xurt bikin, bi pereyê çayekê ku em dikaribin em ê ji kêmendaman re textên bin çengan an jî kursiyên kêmendamên nikarin bimeşin, ji bo werzîşkeran beşdarî pêşbirkan bibin û astengên di nav malbat û kêmendaman, astengên di nav kêmendaman û civakê ji holê rakin." Berna Akbayrak diyar kir ku ger ev projeya wan bi serkeve ew ê projeyên ji bo kêmendamên li heremê çolder jî çêbikin.



# Ciwankara cilûbergên Newrozê

Li hemû Kurdistanê cil û bergên herêmî ji aliyê jinên kedkar ve tên dirûtin û nêrîtên paşerojê yê kurdan bi awayekî nûjen rojane dikin û hewl didin ku ev cil û bergên kelepor bibin cil û bergên rojane. Bi taybetî jin ji bo gelê kurd û Kurdistanê xebatên xwe pêk tînin. Dirwar Nuran Yekti yek ji van jinên kedkar e û dibêje ku ew dixwazin vê dewlemendiya kurdan ya ku di paşerojê de maye, an jî wenda bûye ji bo nifşên nû û siberoja wan vê nerîtê bidomînin û wek mîrateyeke çandî lê xwedî derkevin.



**Tekoşîn Mêrdînî**

Ji her deverê Kurdistanê reng û çeşnên qûmaşan ji bo van cil û bergan têne bikaranîn. Berpirsa kargeha Romans a Cil û Bergên Herêmî Nuran Yekti di derbarê reng, çeşn û bikaranîna qûmaşên herêmî ragihand ku, ji herêma Colemergê xeftan, ji herêma Wanê qotik, ji herêma Amed û Mêrdînê kiras,fistan û hûçik, hem ji bo mêran hem jî ji bo jinan şerwêl, şal û şapik û kember her çi di paşeroja kurdan de hebe, niha jî ew wan çêdikin û difiroşin. Nuran Yekti axaftina xwe wiha didomîne: "Em hemû cûrên qûmaşan bikartînin. Şifon û yên bi pelik jî pazen û basma yên berê jî em di çêkirina cil û bergan de bikartînin. Çi qûmaş û şikl û şêmalên berê hene em hemûyan bikartînin û car caran jî bi awayekî nûjen rojane jî dikin. Hin caran ez bi nerînek cûda şikil didim cil û bergan û wan nûjentir dikim ku ev jî bala keçên ciwan û jinan dikişîne."

Cil û bergên herêmî di nav jinên kurd û Kurdistanê de her diçe zêdetir balkêş dibe û êdî jin lê xwedî derdikevin. Nuran Yekti wiha dibêje: "Car caran ez wan bi awayekî sosret jî di xemilînim û ji bo rojên taybet amade dikim. Ji bo dawetan, cejn û Newroz'an ez wan cuda cuda dixemilînim. Jixwe ez hemû xeml û xemlên berê jî bikartînim. Ew ê jî ji bo hin jinên ku ji kevnariyê hezdikin em çêdikin. Hin jinê bi temen tên kargehê û bi hirbî yên li serê wan û dibêjin 'ma fistanê morî bi gul tune' wê demê ger tune be jî, ez nabêjim tune ye û dibêjim ka ez pîvanê te bigrim û ji te re bidurûm. Ev hem ji bo me hem jî ji bo wan jinan tiştekî taybet e. Yên ji kevnaran hezdikin, an yên ji nûjenkirina kevnariyan hez dikin balkêş dibe û di heman demê de jî lê xwedî derdikevin."



## Rengên jin û xweza yê

Jin li her welatî xwe bi xwezayê daye naskirin an jî bi rengên xwezayê xwe xemilandiye. Bi taybetî li Rojhilata Navîn jinê, xwe bi rengên xweza û erdnîgariya xwe xemilandiye an jî li dijî keşûhewaya erdnîgariya xwe, xwe xemilandiye. Nuran Yekti jî li ser bikaranîna cil û bergên li Kurdistanê û pêwendiya reng û xwezayê wiha diaxive: "Em hemû figûrên kurd û Kurdistanê di çêkirina cil û bergan de bikartînin. Ji şêrê du serî heta teyran, ji hemû rengên bijarê heta çavkaniyên xwezayê. Jixwe jinên kurd rengên dijberî hev li xwe dihewandin, niha em wan rengan jî nûjen dikin. Berê rengê sor û mor bi hevre di kiras, an jî di fistanekî de dihat dîtin. Lê niha em wan rengan bi awayekî nûjen mîna rengên xwezayê, mîna rengên jinê, lihevtînin û didurûn." Li ser pêwendiya xortan û cil û bergên herêmî jî Yekti axaftina xwe wiha berdewam dike: "Dema me dest bi nûjenkirina van cil û bergan kir ne tenê ji jinên bi temen, ji jin û mêran û hemû xortan hatin pirsîn ku dilê wan dixwaze ew jî li xwe bikin. Em dikarin bêjin hemû jin û keçên ciwan jî, ji vê nûjenkirina me kêfxweş in. Yên digotin ev cil karê kalû pîra ye, piştî bi nûjenkirina me, tên dibêjin, ji bo me jî filan tiştî bidurû û ez di dawet an jî di Newrozê de li xwebikin."

## Newroz, jin û xwezaya cil û bergan

Li Kurdistanê Newroz û jin, jin û cil û berg û xweza di hemahengiyê de ne, wate bi rêya civaka kurd ev hemahengî ava bûye. Newroz bi xwezayê xwe di xemilîne. Jin bi rengên xwezayê cil û bergan çêdike û li xwe dike. Nuran Yekti li ser mijara Newroz û jin, jin û cil û berg û xwezayê radigehîne ku jixwe jin xweza ye û dibêje ku rengên cil û bergên berê sor, mor, zer, kesk, şîn û gewr bûne û wiha pê de diçe: "Kîjan reng di xwezayê an jî di biharê de tune ye? Hemû rengên wan cil û bergan û rengên xwezayê rengên agir, çîçek, çiya û rengên gula ne. Bi taybetî dema Newrozê de em gelekî kar dikin ku êdî herkes dixwaze di roja cejna xwe ya pîroz de, xwe bi rengên neteweya xwe bi xwemilîne û bi vî awayî jî rengê netew û nijada xwe bide nîşandan." Yekti di derbarê mijara rojên taybet û hejmara xebatkarên xwe de jî radigehîne ku di rojên asayî de çar kes kar dikin û beriya Newrozê jî ew dibin deh heta duwanzdeh xebatkar û dibêje: "Niha bi saya me, li gelek deveran beriya Newrozê ji bo keç û xortan, li hin cihên din jî cil û bergên herêmî çêdikin. Ev jî me kêf xweş dike. Newroz ji bo me pir grîng e. Ji bilî cejnê ji bo me tê wateya kar û bar jî. Di wan rojên beriya Newrozê de hemû kes tên pîvanê endamên xwe didin û em amedehiya wan dikin. Gelek cureyên cil û bergan hene û buha û nirxên wan jî tên guhertin. Li gor budceya her kesî cil û berg hene. Yên dixwazin cil ên wan bi xeml û nûjen be, buhaya wê cuda ye û yên mîna kevnarê berê bixwaze jî buhaya cilên wan jî cudatir e."

## Xwediyê bê xwediyan

Beriya demekê li Mêrdînê nûtiyê modayê Cemil İpekçi bi alikariya dewlemendên kurd kargehek vekiribû û bi nexş û xemlên cil û bergên kurdan nîmayîşek saz kiribû. Nuran Yekti li hember wan kesên ku bûne alikar ji van kesên ku tu carî li kurda xwedî derneketine, nerazîbûna xwe derdibire û dibêje: "Ez 20 sal in vî karî dikim lê kesî piştgiriya me nekir. Nûtiyekî modayê ji Stenbolê hat û hemû kurdan alikariya wî kir. Ew kesên ku alikariya wî kirin heger alikarî bidana me jî, wê niha rewşa cil û bergên herêmî di asteke din de ba. Em bi dabûnêrîtên xwe çêdikin û nûjen dikin, kesên biyanî jî tên ji me sûd werdigrin û kurdên me jî ji dêvla me, piştgiriyê didin wan. Ev ne tiştek raste. Me kevneşopiya xwe wenda kiribû û tiştê wenda bibe, divê em li wê cihê bigerin ku lê wenda bûye û bibînin, ne ku kesên biyanî werin û lê bibin xwedî."

## Bandora şerî li ser kargehê

Herweke tê zanîn ev demek dirêje ku b li Kurdistanê şer û pêvçûn hene û ji ber vê yekê jî di hemû qadên jiyanê de astengî peyda dibin. Ji bo kargeha Romans a Cil û Bergên Herêmî jî ev pirsgirêkek mezin e ku gel êdî ketiye rewşekê ku giringiyê zêde nadin cil û bergên xwe. Nuran Yekti li ser aboriya cil û bergên herêmî jî rave dike ku niha tenê ji bo rojên taybet en mîna cejn, dawet, nîşan û Newroz'an keç û xort tên van cil û bergan dikirin. Ew dibêje, her sal wan ji bo jinan gelek kiras û fistan didurûtin û hemû jî dihatin firotin, ji bo mêran jî şal û şepik, şerwêl û êlek jî amade dikirin û ew jî gelekî dihatin firotin û wiha didomîne: "Lê îsal rewşa herêmê li ber çav e û gel jî di metirsiyeke mezin de ye. Ji ber vê yekê ne dirûn û ne jî firotin ne wek salên berê ye. Kargeha me li vir e û firoşgeha me jî li kêleka girtîgeha Amedê ye. Jixwe çend mehe ku bi giştî li welatê me û bi taybetî jî li vê derê dorpêç heye û ev jî bandoreke gelek mezin li ser me, kedkaran û hemû gelê herêmê jî dike. Ma di vê rewşê de wê çawa gel netirse û kêfa xwe bike an jî li xemla xwe bifikire?"